# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 41 16 - 22 Sibat 2015 basnews.com

Ezîzê Gerdenzerî:

Şanoya kurdî kulek e

R16



## Başûr û Rojava Şer û dîplomasî

Li Kurdistanê li Kerkûk, Mûsil û Kobanê li aliyekî şerê dijî DAİŞ'ê didome, li aliyê din li Ewropayê şandeyên kurd di bin serokatiya Mesûd Barzanî û rayêdarên PYD'ê de serdanên dîplomatik didomîn. Rayedarên welatê rojavayî di hevdîditinên bi kurdan re piştgiriya xwe teyîd dikin û şanaziya xwe li gel serkeftinên şerwanên kurd tînin ziman.



## Şer mermerê Amedê jî şikand

R13

# Li Rojava hevgirtinên nû?





Piştî şerê navxweyî yê li Sûriye'yê kurdan li ser axa xwe kanton îlankirin û pê re jî herêm bibû hedefa komên radîkal ên îslamîst. Di destpêkê de El Nûsra û piştre jî DAİŞ'ê bi mehan Rojava xist dorpêça xwe û hêzên kurd li hemberî wan serekî dijwar meşandin. Niha jî kurdên Rojava bo parastina destkeftiyan û ewlehiya modela kantonan di gelek aliyan de dest bi lêgerîna tifaqan kir.

Pêvçûnên di navbera hêzên kurd û rejîmê de yên li Haseke û talûkeya ku Efrîn bê dorpêçkirin dibe sedema ku PYD ji rejîmê dûr bikeve û bi mixalefeta Sûriye re tifaqên nû pêk bîne. Li aliyê din bo biciânîna biryarên ku di çarçoveya Peymana Dihokê de hatibûn stendin de jî kurdên Sûriye'yê bi mixalefeta Sûriye re dest bi tevgereke nû kir. R02 - 3



Haşim Haşimi:

# Kurd êdî ne qertên siyasî ne



Parlementerê berê Haşim Haşimi ku wek kesekî nêzikî Davutoğlu tê zanîn û di warê çareseriya pirsgirêka kurd de fikrên wî ji aliyê hin derdoran ve girîng têne hesibandin diyarkir ku bo çareseriyeke mayînde pêdivî bi îradeyeke siyasî heye û li Tirkiye niha îradeyeke wiha derketiye holê. Haşîm di derheqê geşedanên li Rojhilata Navîn jî da zanîn ku kurd êdî bûne aktorekî sereke û ji asta ku dewletên derdorê weke karteke siyasî wan bikartînin derketine û êdî di her qadê de li gor berjewendiyên xwe tevdigerin. Haşimi di derheqê pêvajya çareseriyê, serxwebûn, têkiliyên Tirkiye û Herêma Kurdistanê, meseleya DAİŞ'ê û dîplomasiyê de pirsên BasNûçe'yê bersivand. R08 - 9

## Amed

## Peytexta dilan

R10 - 11



# Kurdên Rojava ji rejîmê dûr dikevin

Piştî şerê navxweyî yê li Sûriyê kurdan li ser axa xwe rêveberiya xwe îlan kirin. Her wiha piştî rêveberiya kurdan hêrêm armanca rêxistinên tûndrew ê îslamî. Ewil êrîşên El Nusrayê bi dû re jî DAIŞ'ê xwest bi êrîşan rêveberiya Rojava ya kurdan ji nav bibe. Kurdên Rojava ji bo ku destkeftiyên di dest ji nav neçin dest bi xebatên tiffaqê kirin. Her wiha biryarên peymana Duhokê roj bi roj tên bicih anîn û partiyên kurd ê li Rojava jî bo rêkeftinan li hev dicivin. Li aliyê din hat zanîn ku ji bo rêveberiya kantonan jî rêkeftin hene û hin biryar hatin stendin ku dê bi opozîsyona Sûriyê jî re hevkarî bê kirin.

Kurda li Rojava hem êrîşên DAIŞ'ê yê zêdeyî 5 meha li ser rêvebriya wan heye ji nav birin û hem jî bi avakrina rêveberiyên xwe xwe bi raya gitî ya cihanê da qebûlkirin. Rêveberiya Rojava ya ku n di destpêkê rêxne lê dihat girtin niha bi partiyên din ên Rojava re di peywendiyê deye û peywendiya xwe û opozîsyona Sûriyê ya ku ji hêla hemû cihanê tê qebûlkirin anî asteke pêş. Rêkeftina TEVD- DEM'ê û ENKS'ê ya li ser rêveberina kantonan berdewam dike û ji bo rêveberiya lijne tên diyarkirin. Her wiha tê angaşt kirin ku ji bo Xweseriya Denokratîk jî hatiye rojevê û di derbarê Xweseriya Demokratîk de jî gengeşî têne kirin. Li hêla din rêveberiya Rojava ya ku peywendiya xwe bi rejimê re didomand piştî êrîşên rejimê yê li ser DAIŞ'ê bi opozîsyona Sûriyê re peywendî danî qet nava tiffaqê. Li hember êrîşan û ji bo parastina destkeftiyan li Efrînê di navbera opozîsyonê û rêveberiya kontonê de peyman hat duristkirin. Her çend di çapemeniya tirkî de weke 'peymana şerîetê' hat destnîşan kirin jî, birayarên peymanê ji bo parastina kantonê û rêgirtina êrîşên li ser kantonê ye. Her wiha hat zanîn ku dê li gorî peymanê xweseriya demokratîk bê pejirandin û YPG û YPJ weke hêzeke meşrû ya leşkerî hatiye qebûl kirin.

Hêzên rejimê, rêxistinên tûndrew ên îslamî yên Lûbnanê, Îranê, û yên dewletên din ê herêmê li Sûriyê bi cihbûnê û êrîşî Rojava dikin. Tahlîlgerên siyasî û stratejîst tînin ziman ku hewcedariya kurdan bi xwe parastin û parastina destkeftiyên wan heye. Tahlîlger ger wiha tînin ziman ku hewcedariya rêveberiya Rojava bi tifaqa opozîsyona Sûriyê re jî heye. Li gor peymana hatiyê destnîşan kirin konseya edeletê hatiye damezirandin û dê roja înê li mizgeftan xûtbe bê xwendin û ji bo pêkanîna karên olî wê xebat bêne meşandin. Ev xebata ku dê ji hêle Konseya Baweriyê ya Kantona Efrînê vê bê kirin ji hêla hin derdoran tê rexnekirin û ew eşkere dikin ku dê di pêşerojê de zagonên şerî li ser xelkê bêne selimandin.

## Gihaneka duyem a peymanê naskirina Rojava ye

Weke tê zanîn, beriya niha jî li Sûriyeyê di navbera mûxalif û YPG'ê de hin peyman hatibûn îmzekirin. Di nav wan de ya herî balkêş jî peymana bi Bûrqan El-Firat re bû. Di çarçoveya vê peymanê de komên mixalif jî li Kobanê li gel kurdan li dij DAIŞ'ê tekoşînekê meşandibûn. Ji peymanên ku beriya niha hatine îmzekirin cûdatir, di vê peymana nû ya li Efrînê de tiştê derdikebe pêş ew e ku hem Rojava ji alî mixelefeta Sûriyeyê ve bi fermî tê nasîn hem jî radestkirina dîlên di destê her dû aliyan de ye. Ji bilî vê peymanê, li gor peymaneke din ku hê nehatiye îmzekirin jî wê sê kantonên Rojava û hêzên YPG'ê bêne nasîn. Tê ragihandin ku li ser mijara modêla Kantonî ku aliyê kurd tê de bi israr e jî hevdîtin dom dikin. Ji alî din ve yek ji daxwazên grîng ên kurdan jî, wek hêzeke fermî ya şoreşa Sûriyeyê pesendkirina YPG'ê ye.





Ebdo Îbrahîm

## 'Me ji bo radestkirina dîlan peymanê îmze kir'

Serokê Konseya Parastina Kantona Afrînê Ebdo Îbrahîm diyar kir ku li ser mijara radestkirina dîlên di destê her dû aliyan de nîqaş didomin û got: "Ji bo ew yasayên me binasin û têbigihîjin, ji bo em jî wan bibînin û binasin û her wiha ji bo çareseriyê ev peyman pêwîst bû. Wekî din kesên ku di nav me de sûcên ku divê bêne darizandin kirine hene. Kesên ku li Efrînê xerabiyan li gelê me dikirin, direviyan aliyên wan. Bi saya vê peymanê emê dikaribin wan kesan di dadgehên xwe de darizînin. Kesên ku li alî wan rêya mirovan birîne û wan şêlandine û hatine aliyê me xwe veşartine jî hene. Em van kesan digirin û dibin radestî wan dikin" Îbrahim diyar kir ku xala duyem a vê peymanê xwendina xutbeyê û meşandina hin xebatên olî ye da zanîn ku wan vê xalê pesend nekiriye û arasteyî komîsyona baweriyan kirî ye.

## 'Ji bo ewlehiya mirovên vê derê çi pêwîst be em ê bikin'

Ebdo Îbrahîm, da zanîn ku peymaneke din ku li serê nîqaş têne kirin lê hê nehatiye îmzekirin jî heye û dom kir: "Xalên ku em di vê peymanê de berî her tiştî daxwaz dikin jî nasîna sê kanton û xweseriya demokratîk e. Her wiha wek hêzeke fermî ya leşkerî ya şoreşa Sûriyeyê nasîn û pesendkirina YPG'ê jî yek ji daxwaza me ya bingehîn e. Li ser van esasan em li hev civiyan û me xwest em her dû peymanan bi hev re olan bikin, lê belê ew bi lez tevgeriyan. Me ji bo siberoja kantona xwe û nasandina dezgeh û saziyên vê derê îmze kir. Her wiha ji bo em mafê ereb, kurd, suryan û ezdiyên vê derê mîsoger bikin me vê peymanê îmze kir. Di vê mijarê de çi erk û berpirsyarî bikebe ser milên me û YPG'ê em ê pêk bînin. Ji bo ewlehî û aramiya şêniyên vê derê çi pêwîst be em ê bikin"

## 'Piştî peymanê li Helebê rejîmê tafilê êrîşê kurdan kir'

Îbrahim, destnîşan kir ku piştî îmzekirina peymanê, li Helebê, rejîmê tafilê bi topan êrîşê taxên kurdan kirî ye û wiha got: "Rejîm, êrîşê her kes û aliyên ku ew ji xwe re xeter dibîne dike. Ji ber ku YPG wek hêzeke fermî nedihate dîtin, di mijara parastina kurdên ku li derveyê kantonan dijîn de me nekaribû aramiyê pêk bînin. Lê belê piştî van peymanan rejîmê bêtehemuliya xwe nîşan da. Ger ku me qebûl nekin û nas nekin, em ê jî vê peymanê careke din di ber çavan de derbas bikin"

YPG bi komên sekûler re li hev kir

Rojnameger Seyit Evran di derbarê nûçeyên ku YPG'ê bi komên îslamî re lihevkiriye de axivî. Evran ani ziman got, çavkanîyên ku di derbare YPG'ê bi mûcahîdan re peyman daniye ne rast e. Yê ku bi wan re li hev hatin çêkirine ne mûcahîd in komên sekuler in. Evran ragihand ku di vê peymanê de xalek li dijî bi tevahî li dijî rawestandina bêrêtiyê ye. Evran da zanîn ku peyman ne weke ku tê bahskirine û bal kişan ser xalên peymanê û wiha berdewam kir: '' Peyman wek tê dîtin nine, dadgehên lihev anînê tenê di naw di koma da derbasdarin, komên ku di demên borî de bi wan re peyman hatibun çêkirin, ji aliye DAIŞ û Nusra re dur in. Li dijî Kurdan hatin bi kar anîn. Wan koman rastiya DAIŞ û Nusra dîtin dixwazin ku ji wan dur bi kevin. Wan koman gori Selefiyan tundrewin ew bêtir komên hene û ew sekûler in ji wan re dibejin îlmanî wana komên ne şîddet parêzin."

Evran anî ziman ku li hember êrîşên li Helebê kurdan xwe parastiye û herema xwe ji dest nedanê, rejîm jî dem dem êrîşan li heremê kurdan dike. Evran her wiha ragihand ku li Helebê ji bilî taxên kurdan ciyê ku jiyan le heye tunene. Erebên ku li heremê dijîn piraniya wan tên cihên aram tên nava taxên kurdan koçeberî wir dibin." Evran di berdewamiya axaftina xwe de eşkere kir ku rejim êrîşê xwe berdewam dike û kurd jî ji bo xweragiriyê amadekariyan dikin. ''Armanca me ewe ku Kurd li tewahiya Suriyê werin temsîlkirin''

Serok vezîrê kantona Afrînê Hevî Mistefa anî ziman ku ; Kurd ji bo na xwe hê bihêz bikin û nunertiya xwe bikin ew peyman çêkirine. Mistefa wiha berdewam kir: " Heke em bi muxelefetê re têkîliya bi kar bînin ewê pirsgirêkên tewahiya Suriyê ji çareser bibin, û Rojava ji ewê were naskirin." Mistefa daz zanîn ku xetere li ser hemû xaka Rojavayê heye û eger hêz derfetê bibînin ew ê êrîşî ser xaka rojava bikin. Mistefa wiha berdewam kir: "Em zanin ku fersendê bibinin ewê êriş bikin. Em ji bona parastina xwe amadenê û em xwe li dijî êrişan amade dikin. Armanca me ewe, bi we peymanê li her deverî nûnertiya kurdan ewê pêk were."

Mistefa li ser rêkeftina rêveberiyê û opozîsyonê jî rawestiya û da zanîn ku ji bo xweseriya rojava bê naskirin ew tifaqê dikin û wan peywendî bi muhalefeta Sûriyê re daniye. Mistefa axaftina xwe wiha domand: "Ji bona kû sîstema me be naskirinê em amadene ku bi herkesî re gengeşiyan bikin. Bi muxalefetê re ji têkilîyê deyin. Bi muxalefeta Surîyê re têkilîyen me ji bilî pirsgirêkên teknîkî pêşde naçin. Lê em dixwazin têkilîyên siyasî ji bipêş bixin. Em her dem amadene û daxwaza xwe ji nû dikin.

## Komîteyên TEVDEM û ENKS'ê dest bi kar kirin

Di rojên pêş de li Qamışlo' ye de civina ku di navbera TEVDEM û ENKS pêk hat komite pêk anin û dinav van komiteyan de ji her rexistinên siyasi nûnerek hat peywirdarkirin. Serokê Kantona Cizirê Ekrem Huso ji alî aborî û leşkerî de komiteyên ku hatine saz kirin xweseriya demokratîk bihêzkirine. Huso da zanîn ku li Hasekê di heremên kurd de bêdengî heye û bal kişand kul ki xelkê bajêr ji bo parastina herêmê û bajêr amadene û dê bajêr radestî kesî nekin. Huso wiha berdewam kir: Li Haseke xelkê me û hêzên YPG'ê amadene hemû dezgehên Rojava biparêzin. Ji bo xelkê di bêdengî aramiyê de bijîn çi ji destê wan tê dikin." Huso her wiha ragihand ku ew rêkeftina Kantona Kobanê û Muhalefeta Sûriyê baş dinirxînin û piştgiriya rêkeftinê dikin.

## Li Kobanê 20 hezar sivil hene

Tê ragihandin ku Piştî Kobanê ji DAIŞ'ê hat paqijkirin rizgarkirina gundan berdewam dike Şer li rojava, başur û rojhilatê gundên bajêr berdewam e. Li ser şer û cepheyê Serokê Kantona Kobanê Enwer Mislim wiha got: "DAIŞ dixwaze li Kobanê û hinek gundên derdora Kobanê dagir bike lê belê ev yeka wan bi sernakeve. Di demeka nez de em dikarin bêjin ku gundên Kobanê bi tevayî bên rizgarkirin. Em hezên kurd bi yek milî li ber xwe bidin û DAIŞ'ê bi tevayî ji Kobanê biavejin." Müslüm ani ziman ku jêrzemina bajêr bi tamamî xira bûye û bi lezgîni pewistî bi ava paqij û nexweşxana heye. Piştî ku bajar hat xilas kirin gelên sivil vegeriyane û anha li Kobanê 20 hezar sivil dijin.

## Em ê bo xelkê Kobanê banga vegerê bikin

Enwer Mislim anî ziman ku bajar bi mayina hatiye dorpeçkirin û astengî xeter li ser jiyana xelkê sivil heye û ew mayînên çandî xetereyan derdixe û ji ber vê yekê jî rewşa xeter a li Kobanê berdewam dike.

Mislim bal kişand ser mayînên çandî û eşkere kir ku ji ber mayîn li derûdra kobanê hatine çandin bajar ji vegera sivlan re ne amadeye û piştî paqîjkirina mayînan ew dê bangawaziya vegerê li xelkê bikin. Mislim wiha berdewam kir: "Bajar ji bo bicihkirina xelkên sivil ne amedeye. Rexistina navnetewî ya paqijkirina mayinan û YPG wê Kobanê ji mayina paqij bike, em ê jî bang li xelkê Kobanê bikin ku vegerin welatê xwe. Azadkirina gundan berdewam dike." Mislim rewşa dawî ya azadkirina gundan jî ragihand û eşkere kir ku hejmara gundên tên rizgar kirin zêde dibe. Mislim wiha berdewam dikir: "Hejmara gundên me pir zêde ne û hinek gund bûne cihê beregehên leşkerî yê DAIŞ'ê. Em van gundan xilas bikin wê karê me pir hindik bimîne. Di rojekî de bi dehan gund azad dibe. Di demeka kin de em ê bang bikin ku DAIŞ bi tamamî ji gundên me derketiye.

## Heya xetere berdewam bike peşmerge ji Kobanê dernakeve

Cabbar Yawerê Wezîrê Peşmerge yê Herema Kurdistanê di derbara nûçeya ku hezên peşmerge yên li Kobanê li Girê Miştenurê baregah danîne de axivî. Cabbar Yawerê da zanîn ku gotinên wisa ji hêla wan nehatine kirin û ew ne gotinên fermî ne. Yawer wiha berdewam kir: "Em vê mijarê naynin rojevê û ev gotin ne gotara fermî ye. Di demake nez de hezên peşmerge yên çaremîn harin Kobanê. Yawer gotina xwe wiha berdewam kir û got: 'Rewşa peşmergeyan pir baş e û em ji bo piştgiriyê li xelkê Rojava pirr şanaz in. Li Kobanê heya xetere berdewam bike û heya ku pewistiyên lojistik ên leşkerî hebe, peşmerge ji Kobanê venaqete." Yawer di derbarê pirsa Hikûmeta Herêma Kurdistanê wê li Kobanê pergalekê saz bike jî de axivî. Yawer da zanîn ku Kobanê jî welatê pêşmergeyane û pêşmerge niha ji bo parastina welatê xwe li wira ne. Yawer wiha berdewam kir: "Jixwe Kobanê welatê wan e. Ew ji bo gelên xwe biparezin li we dere ne."

## Li gundan operasyon berdewam dike

Di vê navberê de ji bo ku DAIŞ li Kobanê bi tamamî tek biçe û herem bi tamamî bê paqijkirin operasyon li gundan berdewam dikin. Gav bi gav hezên kurd li heremê bi peşve diçin û heya niha 200 gund hatine xilaskirin û gundên ku di destê DAIŞ'ê jî de ji bo paqijkirina wan hewldan hene. Piraniya endamên DAIŞ'ê kuştî tên desteser kirin û her wiha hat zanîn ku DAIŞ bi erebe û êrîşkarên xwekûj êrîşan dike. Hat eşkerekirin ku hêzên kurd wan êrîşan dişkînin û dê hemû gundan azad bikin.



# Li cîhanê dîplomasî li Kurdistanê şer

Hefteya çûyî li Ewropayê di derbarê siyaset û dîplomasiya kurd de geşedanên grîng pêk hatin. Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) Mesûd Barzanî ku ji bo beşdariya 51. Konferansa Ewlehiyê ya ku li paytexta Almanya Berlîn'ê pêk hat bû, piştî civînê, bi gellek serok û serkirdeyên Ewropî û dinyayê re hevdîtinên grîng pêk anî. Serokê RHK Barzanî di roja dawî ya Konferansê de bi Cîgirê Serokê Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê(DYA) Joe Biden hevdîtinekê pêk anî. Barzanî, piştî Konferansê ji alî Serokkomarê Frensayê François Hollande ve jî paytext Parîsê, li Qesra Êlysêe ya Serokkomariyê hate pêşwazîkirin. Di vê hevdîtinê de ji bo pêdiviyên Pêşmerge berdewamiya û zêdebûna piştgiriya Frensa hate hate rojevê. Di hevdîtinê de her wiha Serokkomar François Hollande ji ber serkeftinên Pêşmerge yên li Herêma Kurdistanê û yên hêzên kurd ên li Kobanê xweşhaliya xwe anî ziman û da zanîn ku ji bo piştgiriya Pêşmerge ya di qadên şer de û piştgiriya RHK ew ê hewl bidin ku bi welatên Yekîtiya Ewropa re bi hemahengî bixebitin. Serokê RHK Mesûd Barzanî jî ji ber piştgirîdayîna RHK û Pêşmerge, Fransa nîşan daye ku ew dostê gelê kurd e. Barzanî her wiha ji ber hewldanên Frensa yên di dema berdewamiya xeteriya şkestina Kobanê de, ji bo Pêşmerge derbasî Kobanê bibe, spasiyên xwe pêşkêş kir.

Serokê RHK Mesûd Barzanî di serdana xwe ya Ewropayê de li gel Serokê Awûstûrya Heinz Fischer, Seroka Komîsyona Pêwendiyên Derve ya Encûmena Niştimanî ya Fransayê Êlisabeth Guigou û Wezîrê Parastinê yê Frensa Ef Lodriyan bi gellek serok û serkirdeyên welatên Ewropayê re jî hevdîtinan pêk anî.

### PYD jî bû mêvanê Êlysêe

Weke tê zanîn hefteya çûyî Serokkomarê Frensa François Hollande li Qesra Êlysêe Hevseroka PYD'ê Asya Abdula û Berpirsa Jin û Zarokan a PYD'ê Nesrîn Abdula pêşwazî kir. Di vê hevdîtina ku li gel di bernameya fermî ya Hollande de nehatibû nivîsîn de pêk hatibû de hat ragihandin ku PYD'ê ji Frensa daxwaza alîkariya çek û pêdiviyên ji nû ve avakirina Kobanê kirî ye. Pêşwaziyên Hollande yên Serokê RHK û berpirsên PYD'ê bû sedem ku nirxandinên Frensa dest bi hewldanên grîng ên alîkariya kurdan dike û bi vî awayî peyamekî ji Tirikiyeyê re dişîne.

### Di biharê de hemû Kurdistan paqij dibe

Rêvebirê PKK'ê yê berê Nîzamedîn Taş, di derbarê şerê li Herêma Kurdistanê de ji BasNûçeyê re ragihand ku DAIŞ, di eniyan de bi domdarî derbên mezin dixwe û niha jî ji bo pêşî li operasyoneke mezin ya Mûsilê bigire, taktîka xwe guhertiye û êdî dest ji êrîşên bi mebesta bidestxistina wargehan berda ye û dest bi çalakiyên bombeyî yên maşînî û xwekujî kirî ye. Taş anî ziman ku DAIŞ bi vê taktîkê hewl dide wundahiyan bide Pêşmerge û ji ber ku di demên barîna baranê de froke nikarin bombebaranan pêk bînin van çalakiyên xwe di demên baranê de pêk tîne. Taş



got: "Ji ber ku dizane DAIŞ ji bo armanca xwe her rêbazê pêk tîne êdî Pêşmerge pir hestiyar bûye û hemû êrîşên taktîkî tafilê têdigihîje û wan êrîşan pûç derdixe"

Di derbarê rewşa şerê li Şengalê de jî Nîzamedîn Taş angaşt ku Pêşmerge nedixwest tafilê Şengalê rizgar bike, lewre heta Telafer di destê DAIŞ'ê de be Şengal bê rizgarkirin jî ewlehiya wê nayê mîsogerkirin. Taş diyar kir ku ji ber Gerîlla lez kirî ye û ketiye Şengalê, Pêşmerge jî ji bêçarî ketiye Şengalê. Nîzamedîn Taş wiha dom kir: "Piraniya cihên stratejîk ên Şengalê hatine bidestxistin, lê belê DAIŞ hê jî bi hêzeke mezin ku di dest wê de çekên giran hene di Şengalê de ye. Ji bo Şengal bi giştî bê rizgarkirin û siberoja wê bê garantîkirin divê Şengal li gel Teleferê bi operasyoneke hevbeş bê rizgarkirin. Lê belê ji ber ku Telefer navçeyeke ereb e û biryara Pêşmerge heye ku ew ê bi serê xwe wargehên ereb rizgar neke Pêşmerge hewl dide ku bi plansaziyeke hevbeş a bi Artêşa Iraqê re Telefer û Şengalê bi hev re rizgar bikin, da ku siberoja Şengalê bê garantîkirin" Taş angaşt ku jixwe plansaziyeke wiha heye û got: "Li gor pêşbîniya min wê di biharê de ev operasyon pêk bê" Nîzamedîn Taş da zanîn ku ji bilî nîvê Şengalê, dû nehyeyên derdora Şengalê û çend gundên din hemû axa Kurdistanê ji dest DAIŞ'ê hatiye rizgarkirin û angaşt ku di operasyona ku wê di biharê de pêk bê wê hemû xaka Kurdistanê bê rizgarkirin.

### DAIŞ bendeke 500 km dikole

Hate ragihandin ku endamên DAIŞ'ê ji bo wargehên ku di destê wan de mane ji dest bernedin dest bi kolandina bendan kirine. Peyamnêra Zagros TV Nsaran Hawramî ku yek ji çalaktirîn peyamnêrên ku eniyên şer ji nêz ve dişopîne jî ji BasNûçeyê re ragihand ku DAIŞ'ê, ji bo pêşî li êrîşên Pêşmerge bigire, li dora Mûsilê, dest bi kolandina bendeke mezin ku nêzîkî 500 kîlomêtre dirêje kirî ye. Hawramî anî ziman ku li gel kolandına bendan jî êrîşên Pêşmerge û yên frokeyên hêzên hevpeyman berdewam dikin û bi van êrîşan nahêlin DAIŞ vê bendê bikole.

Nsaran Hawramî da zanîn ku çend roj berê Pêşmerge nehyeya Wankê ya nêzîkî Kerkûkê ji DAIŞ'ê rizgar kirî ye û di encama vê êrîşa Pêşmerge de şerekî mezin rû daye û DAIŞ bêçar maye ku ji Wankê vekişe. Hawramî her wiha da zanîn ku DAIŞ'ê li nahyeya Zûmar û Graw, li dij Hêzên Pêşmerge du êrîş pêk anîne lê belê Pêşmerge ev êrîşên DAIŞ'ê têkşikandiye û di encama êrîşa Zûmarê de 18 endamên DAIŞ'ê hatine kuştin û du Pêşmerge birîndar bûne û di êrîşa Graw de jî 11 endamên DAIŞ'ê hatine kuştin û Pêşmerge tu wundahî yan jî birîndar nedaye.

### 41 Malbatên kurd dîl ketine

DAIŞ ji aliyekî bi kolandina bendan hewl dide ku temenê xwe hinek din dirêj bike ji alî din ve jî pêkanînên xwe yên dijwar didomîne. Li gor agahiyên ku ji herêmê têne ber destên me angaşt heye ku DAIŞ'ê 41 malbatên kurd yên ku dixazin ji nahiyeya Zûmarê ya girêdayî Mûsilê koçî Herêma Kurdistanê bikin dîl girtine. 41 malbatên kurd ên ku bi mebesta ji xeteriya DAIŞ'ê xwe biparêzin û bi vê mebestê hewl dane ku ji Nahyeya Zûmarê koç bikin û derbasî Herêma Kurdistanê bibin, beriya ku bigihîjin Herêmê ji alî endamên DAIŞ'ê ve dîl hatine girtin. Ji bilî van agahiyan, di derbarê aqûbeta van malbatan de heta niha tu agahiyên din nehatine bidestxistin.

### Pêşmerge dibe artêşeke modêrn

Berdevkê Çapemeniyê yê Wezareta Pêşmrerge Helgurt Hîkmet da zanîn ku xebatên modernîzekirin û wek artêşekê sazûmankirina hêzên Pêşmerge dom dikin. Helgurt Hîkmet di hevpeyvîna xwe ya bi Rojnameya Şerq El-Ewsad de qala alîkariyên dewletên rojava dike û tîne ziman ku DYA, heta niha 60 kargo alavên leşkerî şandiye Herêma Kurdistanê. Hikmet dibêje: "Lê belê alîkariyên leşkerî yên ku ji hêzên Pêşmerge re têne kirin pir hindik in. Çek û amûrên leşkerî yên ku têne şandin têra hemû yekîneyên Pêşmerge nakin. Jixwe hemû alîkariyên ku têne şandin ne çek in, di navê de cebilxaneyê yedek jî heye" Di derbarê cûre û qelîteya çekên ku heta niha ji Hêzên Pêşmerge re hatine şandin de jî diyar kir ku di nav van çekan de ya ku herî bikêrhatî ye mûşekên Mîlan in. Hîkmet da zanîn ku di eniyan de mûşekên Mîlan bi taybetî li dij tang û maşînên zirxî bandoreke baş pêk tîne û pir bi kêrî Pêşmerge têne.

Di derbarê modêrnîzekirina hêzên Pêşmerge de Hîkmet da zanîn ku di nîvê meha Sebatê de, wê pisporên leşkerî yên welatên ku di nav hêzên hevpeyman de cih digirin bêne Herêma Kurdistanê û wê dest bi perwerdekirina dewreyên nû yên yekîneyên Pêşmerge bikin. Hîkmet got: "Armanca van xebatên perwerdekirin û bi çekkirina hêzên Pêşmerge ji bo wek artêşeke modêrn ji nû ve birêxistinkirina hêzên Pêşmerge ye"

Li ser naveroka perwerdehiya leşkerî de jî Berdevkê Wezareta Pêşmerge Helgurt Hîkmet wiha dom kir: "Ev şer wê dirêj dom bike. Bi vê perwerdehiyê em hêzên xwe ji bo şerekî demdirêj amade dikin. Em hewl didin ku perwerdehî û bi çek û rextkirineke ku ji hemû rewşên şer re goncav e pêk bînin. Wek nimûne; Perwerdehiya amadekariya bi çekên modêrn pêkanîna şerên kuçeyan têne dayîn" Hîkmet di dawiya hevpeyvîna xwe de da zanîn ku di serdana Wezîrê Parastinê yê Almanyayê ya Kurdistanê de wan lîsteke pêdiviyan pêşkêş kirî ye û di wê çarçoveyê de wê Almanya ji Herêma Kurdistanê re alîkariyeke leşkerî ya ku bi bûhayê 14 milyon euro ye bike.w



### DYA Şerê bejayî yê li dij DAIŞ'ê nîqaş dike

Serokê DYA Barack Obamaji bo li dij DAIŞ'ê têbikoşe pêşnûmaya destûrgirtina bikaranîna hêzên bejayî pêşkêşî Kongre'yê kir. Ev pêşnûmaya Obama destûr nade ku ev hêz şereki bejayî pêk bîne. Her wiha qada bikaranîna vê hêzê tenê bi Sûrîye û Iraqê nehatiye bi sînorkirin, lê belê dema bikaranîna wê bi 3 salan hatiye sînorkirin. Demokrat ji niha ve bi angaşta ku 'Çarçoveya wê pir freh e' pêşnûmayê rexne kirin. Komarparêz dibêjin zimanê wê pir bi sînor e. Tê gotin ku piştî Kongre biryara zimanê pêşnûmayê diyar bike wê frawaniya çarçoveya daxwaza destûrstendina Obama diyar bibe. Obama diyar kiribû ku ev daxwaza pejirandina pêşnûmayeke ku ji bo operasyonên ku pêdiviya wê bi hêzeke mezin a bejayî heye û wek yên li Afganistan û Iraqê bi demdirêjî dom dike nîne.

### "Mîna ku ji bo hin operasyonên bejayî destûr tê xwestin xuya dike"

Yek ji Endamên Hîkariyê yên Zanîngehên Amerîkayê Chris Edelson di derbarê pêşnûmayê de got: "Di danasîna operasyonên bi mebesta êrîşan de tiştê ku bala min kêşa destnûşankirina 'mayînde, demdirêjî' bû û bi rastî tiştekî tênegihîştim. Belkî Kongre bi awayekî din tevbigere lê wisa xuya ye ku Qesra Sipî mayînde nebe jî ji bo helwestînên hin operasyonên bejayî destûr dixwaze" Edelson, li ser pirsa; 'gelo destûrxwestin pêşî lê vedike ku ji bo parastinê hêzeke bejayî pêk bîne?' bersiva; "Di termînolojiya pêşnûmaya destûrstendinê ji ber ku wateya 'Bi şertê ku bi sînor û demdirêjî nebe dikare rê li ber operasyonên bejayî veke' jî tê derxistin, bûye sedemê peroşiyan" da. Edelson nirxandina xwe wiha dom kir: "Di mercên asan de ji bo parastinê, pêdiviya artêşê bi destûra Kongreyê tune ye. Lê belê ev pêşnûmaya Obama wisa xuya dike ku hem ji bo operasyonên parastinê û hem jî bi şerta ku mayînde nebe ji operasyonên êrîşî re jî destûr dide"

Edelson, desnîşan kir ku zimanê vê pêşnûmayê ji yê pêşnûmaya beriya xwe ya ku ji alî Komîteya Têkiliyên Derve ya Senatoyê ve hatibû pijirandin cûdatir e û got: "Wekî din mebesta peyva 'demdirêjî' çi ye? 5 sal e? 10 sal e?

### Qesra Sipî: Me bi zanebûn zimanekî ne zelal bikar anî

Berdevkê Qesra Sipî Josh Earnest jî qebûl kir ku zimanê pêşnûmaya destûrstendinê ne zelal e û diyar kir ku wan bi zanebûn kirî ye. Earnest, got: "Ji bo egeriya rewşên awarte, divê di destê Serokê DYA Barack Obama de rayeyên bi vî rengî ku dikaribe pêşî li rewşan xeternak bigire hebin. Di çarçoveya ku me di pêşnûmayê de bi sînor kirî ye, ger ku pêwîstiya çalakiyên leşkerî rû bide, divê Serfermandar bêyî li benda destûreke yasayî bisekine û dikaribe tafilê çalakiyên ji bo pêşîlêgirtina bûyerên xeternak pêk bîne me di pêşnûmayê de zimanekî wisa bikar anî"

Berpirsekî Pentagonê jî di derbarê zimanê vê pêşnûmaya destûrstendina pêkanîna operasyonên bejayî de diyar kir ku ev pêşnûma şerekî bejayî yê mezin an jî operasyoneke demdirêj nahundurîne û got: "Divê hêzên herêmî çalakiyên bi vî rengî yên mezin û demdirêj pêk bînin.

## Em naxwazin ku ereb xwe qewirandî hîs bikin

Rawêjkarê Parastina Giştî yê Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî li ser babeta xweqewirandî hestkirina gelê ereb nirxandinekê kur û diyar kir ku ew di vê mijarê de pir hestiyar tevdigerin û naxwazin gelê ereb xwe wusa hest bikin û ji bo ev hestiyarî der nebe ew bi hendazeyî tevdigerin. Di derbarê şer de jî Barzanî got: "Ji bo hemû herêm ji bin dagirkeriya DAIŞ'ê bê rizgarkirin divê bi artêşa Iraqê û Pêşmerge tekoşîneke hemaheng bimeşînin.

Kanala CNN'ê li eniya şer bi Rawêjkarê Parastina Giştî yê Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî re hevpeyvînekê kir. Barzanî di hevpeyvînê de li ser şerê ku Pêşmerge li dij DAIŞ'ê dimeşîne û rewşa dawî ya herêmê nirxandinan kir. Barzanî pêşketina Pêşmerge ya li hember DAIŞ'ê li ser nexşeya herêmê rave kir û li ser xwe qewirandî hestkirina ereban wiha axivî: "Em tu carî naxwazin ku di nav gelê ereb de hestiyariyeke ku têne qewirandin bigeşe. Lê belê divê ez vê yekê jî bînim ziman ku divê em hemû herêmê ji DAIŞ'ê paqij bikin"

Rawêjkarê Parastinê Mesrûr Barzanî da zanîn ku Pêşmergeyên Kurdistanê gellek deverên ku DAIŞ'ê dagir kiribû rizgar kirine lê belê hin rewşên ku pêşveçûna Pêşmerge radiwestînin hene. Barzanî got: "Pêşmerge gellek deverên ku ji alî DAIŞ'ê ve hatibûn dagirtin rizgar kiribe jî ji bo herêm bi tevahî bê rizgarkirin divê Artêşa Iraqê û Pêşmerge tekoşîneke hevpar û hemaheng bimeşînin. Pêşmerge di vê tekoşîna xwe de bi hendazeyî tevdigere û naxwaze gelê ereb xwe qewirandî hest bike û ji bo vê yekê çi pêwîst be em dikin û emê bikin.

Mesrûr Barzanî di hevpeyvînê de li ser nexşeya herêmê, dever û wargehên ku ji dest DAIŞ'ê hatine rizgarkirin destnîşan kir û anî ziman ku gellek deverên grîng û stratejîk êdî ne di destê DAIŞ'ê de ne û got: "Gellek dever û rêyên grîng êdî ne di destê DAIŞ'ê de ne. Ger ku artêşa Iraqê xwe amade bike, bi tekoşîneke hevpar em ê dikaribin hemû axa Iraq û Kurdistanê ji DAIŞ'ê rizgar bikin"

# Folklorê ma ra tayê nimûneyî

**Nadire Güntaş Aldatmaz**

Eslê çekuya "Xêlas"î, Xizir Îlyas (Xidir Îlyas) o. Çekuye vurîya û heta ewro sey çekuya "Xêlas"î ameya.Xizir, bawerîya kirmancanê elewîyan de fîgurode zaf muhîm o. Xizir o, hazir o. Kam ke tenge de bî, reseno ci. Eke veng da ci, vanê "Ya Xizirê saeta tenge, bê comerdîye!"."Ya Xizirê derya û dengijî, ti esta ke esta!"

"Xizir, Dêrsim de tewr bimbarek nîyo. O, hetê bimbarekîye ra, Heqî ra têpîya yeno. Labelê cuya rojaneyî de, keso bimbarek o ke ci rê tewr zîyade îtîbar esto, tewr zîyade venga ci danê, Xizir o." Kam ke tenge de bo, venga Xizirî dano. Çike Xizir goreyê bawerîye, rew reseno.

"Xizir, tena hetê kurdanê elewîyan de nîno heskerdene. Şarê ke mensubê zobî dîn û bawerîyan ê kî ey nas kenê, ey rê îman kenê, seba înan kî Xizir bimbarek o. Bawerîya Xizirî, yan kî sey yê Xizirî, heta wextanê zaf kananê tarîxî kî sona. Ma vajî, Utnapîştîmo ke deryayê gunayan ra vêrdo ra, ameyo, bîyo bêmerg û Destana Gilgamişî de qalê ci beno, figurode nîyanên o." Munzur Çem, eynî esere xo de wexto ke qalê figurê Xizirî yo ke bawerîyanê bînan de esto, keno, qalê George Îlîaso ke xiristîyanênî de, Gregoro ke mîtolojîyê yunanî de esto kî keno.

Bawerkerdişî ra gore, vanê Xizir kuweno qilixê feqîran, keye bi keye fetelîno. O semed ra, vanê îye ke feqîr ê, pars kenê arê, înan rê tim ardim bikerê. Zerrîya înan meşiknê. Înan ra yew belkî kî Xizir o.

Bawerîya Xizirî kî dînanê yew Homayinan ra ver o. Fîgurode sey Xizirî, bi zobî nameyan yahudîyênî de û xirîstîyanênî de kî esto.

"Dêrsimijî, bê ke wayîrê kitabêkê dînî bê, wayîrê dînêkê taybetî yê ke zemananê verênan ra yeno û ma nêzanê ma do çi nameyî pira nîn. Xaçparêz nîyê, muhemedî nîyê, mûsewî nîyê la dînê înan mexlûteyê heme dînan o, mexlûteyê dînanê kehenan û yê neweyan o."



## Rojeyê Xizirî

Rojeyê Xizirî hîrê rojî yeno girewtene. Kesê azebî, zîyadêr keynekê azebî awe nêsimenê ke hewnê xo de kam awe dano ci bivînê. Bawerîya înan gore, uwo ke awe dano cî, ey de zewecînê.

Roje ke qedîya, qirban kenê. Kes qirbanê xo nêweno, xirab o. Hondayê ke tam kenê. Yîyê bînî kenê vila. Gereke kêşî nêheridnê. Pêro bara xo rê rajî bê.

"Xêrdlas de kî sey yê Gaxanî hîrê rojî roje gênê... Labelê şeklê girewtena nê rojeyî, ca ra bi ca vurîno. No roje, tayê cayan de hîrê rojî pêsero yeno girewtene. Tayê cayan de hîrê hefteyî pêsero, roja çarşeme yeno girewtene. Hefteyê çarine de, roja çarşeme kî roşan pîroz beno.

Roje, bi çi metodî gêrîno wa bigêrîyo, ganî Xêrdlas (Roşanê Xizirî), rastê roja çarşemeyî bêro."

Rojeyê Xizirî, sey Xizirî bi xo zaf muhîm o. Goreyê Andranîkî, hetta rojeyo tewr muhîm o.

"Ê zerrî û cigere ra hîrê yan panc roj rojeyê Sûrb Sargîsî gênê. Sûrb Sargîs û Sûrb Gêvorg pêxamberê înan ê. Yê verênî ra vanê Xizir ke wayîrê erdî yo, yê diyîne ra zî vanê Xidir ke wayîrê awe yo.

## Qawita Xizirî

Qawite, wextê rojeyê Xizirî de genimi ra virazîna. Şekl û armancê viraştena qawite nîya ya:

"Genimî, sac de rind kenê sûr, kenê bijerik û pê destarî rînê ra, kenê sey ardî, kenê zereyê legane. Serê qawite rind kenê rast ke Xizirî ke dest na pira biaso.

Pêşewe legane zereyê banî de cayê de nanê ro. Sodi ra urzenê ra, qawite de nîyadanê ke ala Xizir ameyo yan nêameyo. Serê qawite de, cayê de ke îşaretê bî, dêma Xizir ameyo. Derhal xebere danê der-ciranî, keyf kenê, qirbanan kenê ke Xizir ameyo keyê înan.

Goreyê bawerîya şarî, ameyena Xizirî bereket o, canweşî ya, serrastî ya."

Viraştena qawite hetê kirmancanê sunîyan de kî esta. "Mesela dewanê Gêlî de vanê "qawiti". (Ferhengê Malmîsanijî de "qawite" esta.) Roja ci ra zî vanê, 'Xizîlyas/Xizlîyas'. Kurmancan de zî "qawit"e esta. Mavajîme Ferhengê kurdî-tirkî yê Zana Farqînî (r. 1476) de "qawit: kavut" esta. Nê ferhengî de çend varyasyonê kurmanckî yê na çekuye zî estê: qawît, qawût.

## Qirbanê Xizirî

Roşanê Qirbanan, folklorê Dêrsimî de çin o. Nê serranê peyênan de tayê ke nezdîyê sunîyan der ê û binê têsîrê kulturê înan de mendê, Roşanê Qirbanan de qirban sere birnenê.

Zafêrê şarê kirmancanê hetê Dêrsimî roja roşanî de nêbo kî, qirban sere birnenê. Zîyadeyê qirbanan, Xêlas de benê. Ci ra "Qirbanê Xizirî" yan kî "Qirbana Xizirî" vanê.

Zobî, key ke şî zîyare ser, qirban kenê. Yan kî kamcîn wext beno wa bibo, zereyê merdimî ra key ke ame, o wext qirban sere birneno. Seba qirbanî wextode tam bellî çin o.

"Elewîyê hetê Dêrsimî, di şeklan de qirban sere birnenê. Nînan ra yew, her serre zemanê perîyodîkî de beno."

Tîya qesta nuştoxî o yo ke her keye seba xo wextê bellî keno û o wext ke ame, qirbanê xo keno.

"Qirbanê perîyodîkî ra teber, tayê zemanan de û seba tayê çîyan kî qirban kenê. Mesela, pîr yan kî rayber ke ame, sirê cemî de dewrêşî ke pêşnîyaze kerd, hewn de ke dî kî qirban kenê. Wexto ke Tîje vejîye, verva Tîje de qirban kenê."







# Pirdê Malabadê

Eserê tarîxî heme rindek ê, bitaybetî pirdî seba ke rayîrê şîyayîş û ameyîşê însanan asan kenê, hîna rindek ê.

Welatê ma Kurdistan seba ke welatê royan û çeman o, zaf pirdê tarîxî yê rindekî tede estê.

Kurdistan de pirdanê tewr rindekan ra yew "Pirdê Mala Badê" yo. Pirdê Mala Badê tena pird nîyo, yew şaheser o.

Pirdê Mala Badê dewrê dewleta Merwanîyan (983-1085) de ameyo viraştiş. Seba ke ronayoxê dewleta Merwanîyan Bad bîn Dostik bîyo, coka xanedanîya Merwanîyan ra "Mala Badê" zî ameyo vatiş. Û seba ke no pird hetê hukimdaranê dewleta Merwanîyan ra virazîyayo, ci ra "Pirdê Mala Badê" yeno vatiş.

Seba ke tirkî kurdan înkar kenê coka namdaranê esilkurdan û eserê ke kurdan viraştê, kenê malê xo. Vanê no pird zî hetê Artuklîyan ra virazîyayo. La no melumat raşt nîyo. Nameyê xo ra zî îsbatkerde yo ke no pird hetê Merwanîyan ra virazîyayo.

Pirdê Mala Badê merkezê Silîvan ra vîst û hîrê kîlometreyî hetê rojhelatî de, serê çemê Batmanî de yo. Pird hewt metreyî hîra, new metreyî berz, se û pancas metreyî zî derg o. Hîrayîya kemberê pirdî 38.60 metreyî yo. Vanê dinya de pirdo ke kemberê ey tewr hîra, Pirdê Mala Badê yo. Nê çimeyê girdî ra teber çar çimeyê qijkekê bînî zî estê. Pird hîrê qismî yo. Zereyê her di qismanê nat û wetî de seba raywanan odayî estê. Serê pirdî de zî yew ber esto.

Tarîx de çend rey pird ameyo restorekerdiş. Tewr peynî de 1989 de hetê Beledîyeya Silîvanî ra ameyo restore bîyo. Dewleta tirkan 1950 de cêrê pirdî de yew pirdo newe viraşto, coka êdî kes Pirdê Mala Badê ser ra nêvîyareno. Dewleta tirkan corê pirdî de zî ewbend viraşto. Nika Pirdê Mala Badê mîyanê dêsê awbendî û pirdê neweyî de sey eserêkê entîkeyî payanî ra yo.

Derheqê Pirdê Mala Badê de yew efsane zî esta. Vanê zemanê dewleta Merwanîyan de xortêk cêrê Pirdê Mala Badê de dest bi viraştişê pirdêk kerdo. Yew keyneke zî dest bi viraştişê Pirdê Mala Badê kerdo. Her diyan zî reqabet kerdo pirdê xo temam kerdo.

Eke pirdî temam benê, lajek vano, "Mi pirdêko mehkem viraşt, caran nêrijyeno." Keyneke zî vana "Mi pirdêko mehkem viraşt, eke Homa nêrijno, nêrijîyeno."

Seba ke lajekî nameyê Homayî kerdo xo vîr ra, Homayî emir dayo morceleyan ke şirê pirdê lajekî birijnê. Moreceleyî dekewtê zereyê dêsî, heme qul kerdo, wisarî awe werişta, pird rijnayo berdo.

Seba ke keyneke nameyê Homayî nêkerdo xo vîr ra û vato "eke Homa nêrijno, nêrijyeno" coka Homayî vato do hetanî qîyamet pirdê aye payanî rab o.

# Şerefxan

Şerefname ke tarîxê kurdan de kitabêko zaf muhîm o, hetê hukimdarê Bedlîsî Mîr Şeref Xanî (1543-1604) ra bi fariskî nusîyayo û 1597 de temam bîyo. Cîldê verên yê Şerefnameyî de behsê tarîxê grûbanê cematkî û mîrekîyanê kurdan beno. Cildê diyin yê Şerefnameyî zî bi kilmîye behsê tarîxê Usmanîyan û Îranî keno.

Destnuşteyê orîjînalî yê Şerefnameyî Oxford University, Bodleian Library, No: 312 de pawite yê.

Cîldê verên yê Şerefnameyî bi emrê sultanê Umsanîyan Mehmedê Çarinî bi destê Muhemed bîn Ehmed Begî ke bi xo sulaleyê mîreyanê Bedlîsî ra yo serra 1668 de tercumeyê tirkîya usmanîkî bîyo. No nusxe nika İstanbul Belediyesi, Atatürk Kitaplığı, Muallim Cevdet Yazmaları, No: 0.29 de pawite yo.

Oryantalîsto rûs V. Veliaminof Zernofî tercumeyê fransızkî kerdo û pa metnê fariskî yê orîjînalî 1860 de St. Petersbourg de çap kerdo. Dima êdî zaf rey tercume bîyo û çap bîyo. Mehemed Elî Ewnî efendîyê dimilî yê Sêwregijî temamê metnê Şerefnameyî tercumeyê erebkî kerdo. Mehmed Emîn Bozarslanî tercumeyê erebkî esas girewto û tadayo tirkî ser, reya verêne 1971 de Tirkîya de çap kerdo.



## Haşim Haşimi:

# Tu dewlet êdî nikarin bi kurdan bilîzin

**Haşim Haşimi, yek ji wan siyasetmedarane ku di rojên herî teng û dijwar de bi kurdbûna xwe derketiye pêş. Wan demên ku mirov ji ber kurdbûna xwe rastî sûîqesd, failê mechûl û revandinan dihatin, Haşimi siyaseta mafê kurdan dikir. Ew yek ji aktorên siyaseta reformîst a Turgut Özal e. Bi saya wê siyaseta Özal a li gorî dema xwe miyanrew û qismen azadîbexş, deriyekî ronahiyê li ber kurdan vebû.**

**Berî niha bi heftiyekê li Hewlêrê bernameyeke bi beşdariya kesayetên herî nêzî Davutoğlu û Barzanî birêve çû. Şêwirmendên sereke yên Davutoğlu Hatem Ete û Etyen Mahçupyan û kesayetên gelekî nêzîkî Barzanî Fûad Huseyin û Hêmin Hewramî beşdarî bernameyê bûn. Haşim Haşimi jî yek ji panelîstan bû. Dema ku Fûad Huseyin ku yek ji nêzîktirînê Barzanî tê qebûlkirin xeberdana xwe dikir Haşim Haşimi jî li kêleka wî rûniştibû. Huseyin kêliya behsa salên 80-90'î li Tirkiyê kir, bi aliyê Haşimi ve zivirî û wiha got: "Di wan salan de peyva Kurd bi serê xwe problem bû. Em bi dizî diçûne Enqereyê, me li parlamentoye bi arîkariya Kak Haşim, bi parlamenterên Tirkiyê re nîqaşa peyva Kurd dikir. Kak Haşim, wan serdeman baş dizane." Dîsa dema behsa koça Kurdan a sala 89-90an dikir dîsa berê xwe da Haşimi û got: "Kat Haşim wan karesatan ji nêzîk ve dizane. Lewra ew yek ji wan kesan ku di wê koça mezin de bi hana me ve hatibû." Ji ber ku Haşimi wan salan Şaredarê Cizîrê bû û hestê wî yê Kurdîtiyê kir ku bi hemû îmkanên xwe arîkariya koçberên Başûrî bike.**

**Di vê heyama ku sînorê Sykes Picotê ji nû ve tê nîqaşkirin û bi gotina Barzanî, ew sînorên ku xelet hatine xêzkirin dê îro bi xwînê bêne diyarkirin, me xwest guh bidinê dostê wî yê qedîm Haşim Haşimi. Herwiha li Tirkiye'yê bi navê Pêvajoya Çareseriyê merheleyeke nû ji bo çareserkirina meseleya kurdên bakur dimeşe. Haşimi, wekî kesekî nêzîkî Davutoğlu jî yek ji agahdarê mijarê ye. Bîr û fikrên wî yên di vî warî de bi baweriya me dê ji bo roja îro sûdewer bin.**



**Abdulhakim Günaydın**

***Hûn wekî siyasetmedarekî xwedî tecrube û pispor, rewşa Başûrê Kurdistanê ji destpêkê hetanî roja îro çawa dinirxînin?***

Di Rojhilata Navîn de çar milletên eslî hene: kurd, ereb, fars û tirk. Sedema şer, nexweşî û pevçûnên Rojhilata Navîn ya sereke jî ew e ku sînorên wê ne li ser esasê edaletê hatine çêkirin. Heke di herba cihanê de an jî di şerên din de sînorên Rojhilata Navîn li ser edaletê bihatana çêkirin, îro ev şer nedibû û xwîn nedihate rijandin. Yên ku ev sînor çêkirine mesûl in. Lazim e sînor li ser esasê edaletê bêne revîzekirin. Dema ku em li welatê Xelîcê (Kendav) dinêrin wekî îstasyonên benzînê dewletên Ereb çêbûne. Halbûkî hemû yek millet in. Em hemû jî dizanin bingeha siyaseta dewletên xurt, bi rastî ruhê siyaseta wan li ser berjewendiyên ekonomî û siyasî ye, plan û projeyên wan li ser vê rêbazê ne. Ev dewlet car car bi çek û car caran jî bi hibrê li ser masê hatine çêkirin. Dema temel ne li ser edaletê hatibe avêtin îro nebe sibê yê biherife. Kurdan li ber xwe daye. Piştî ku Emrîka hate Rojhilata Navîn sistema Iraqê hilweşa. Dengeyên nû ava bûn. Kurd êdî ne kartên siyasî ne ku hin kes an jî dewlet pê bilîzin. Ji wê rewşê derbas bûn. Hilweşîna Iraqê kurd kirin teref. Bûn muxatab. Ev gelek girîng e. Kurdistan ev bîst û pênc sal in bûye xwedî tecrube û xwe li hemberî dinyayê isbat kirine, lewma bûn muxatabê û dinyayê.



***Têkiliyên hikûmeta Herêma Kurdistanê û Tirkiyê çawa dest pê kirin, niha di çi astê de ne?***

Di siyasetê de ez îddia dikim ku kurdan ne bi cîranên xwe re û ne jî bi aliyekî din re xayintî kiriye. Hem binemala Barzanî û hem jî siyasetmedar û rêberên din xayintî nekirine. Rêz û hurmeta cîranên xwe girtine. Barzanî û siyasetmedarên din ev siyaseta mêranî, camêrî û eşkere li hemberî dost û cîranên xwe kirine. Wan ev exlaq û duristiya xwe ji serokê mezin Mela Mistefa Barzanî girtiye. Çimkî meziyetên serokê mezin yên însanî, hiqûqî û exlaqî gelekî bilind bûn. Siyasetmedarên Başûrê Kurdistanê li ser vê esasê siyaset meşandin û muweffeq bûn. Carinan di pişt perdê re û car caran jî bi eşkere ev nêzî sî sal in ez taqîba têkiliyên Enqere û Hewlêrê dikim. Çûme û hatime. Li ser esasê rastî û duristiyê min nêrînên xwe gihandine herdu milan. Destpêka têkiliyên herdu aliyan an li ser lingê medyayê bû yan jî li ser mekanîzmên xaricî bûn, ev tişt xelet bû. Hikûmetên berê nexwestin rasterast têkiliyan bi Kurdistanê re deynin û bi awayekî şowenî siyaset meşandin. Di dinyayê de gelek pirsgirêk hene; aborî, çandî, siyasî û bi psikolojî. Çareseriya pirsgirêkan tenê bi diyalogê dibe. Ji vê metodê maqûltir metod di dinyayê de nehatiye dîtin û tuneye. Vêca min birifîng dan burokratan, wezîran, serokwezîran û hwd. Min ji wezîrê derve re got heke niyeteke we hebe, divê di Rojhilata Navîn de bi taybetî pêşî bi Kurdan re têkiliyê deynin. Li ser esasê dostbîniyê, bi awayekî semîmî û bi qelbî wan nas bikin. Ji ber ku kurd wekî berê ne kartên siyasî ne. kurd alî ne û milek in. Ji bo vê yekê metoda herî maqûl danîna diyalog û axaftinê ye. Ev sistema nû rasterast AKP'ê meşand. Çûna wezîr û serokwezîr bo Hewlêrê û îadeyî ziyaret hatin kirin. Civîn çêbûn, peymanên bazirganî û ewlehiyê hatin îmzekirin û ev têkilî hê jî berdewam in. Bêtir jî hatina Serok Barzanî ji bo Amedê mîlad bû. Çima mîlad e? Berê hatin, çûyîn û hevdîtîn di bin sîwana asayîş û leşkeriyê de bû. Lê ev hevdîtîn bi awayekî eşkere û alenî çêbû. Ew hevdîtin ne li Tirkiyê tenê, di tevekê Rojhilata Navîn de înkara miletê kurd pûçkir û bi dîrokê berhewa kir.

### Di pêvajoya aştiyê û ya Osloyê de rola we çi bû?

Ez rasterast nebûme muxatabê Qendîlê. Bes bi navgîn û bi navberiya dost û nasan ev pêvajo dimeşiya. Hin şertên wan hebûn. Yêk jê rastkirina şert û mercên Abdullah Öcalan û berdana nexweşên girtî bû. Ya din jî guhertina Qanûna Dijî Terorê, muxatab girtin û rawestandina girtiyên KCK'ê. Ev şertên sereke bûn.

***Hûn pêvajoya aştiyê çawa dinirxînin, çima car caran disekine an jî dixitime?***

Pirsgirêka kurd giraniya wê heye. Ev pirsgirêka sedê salan e. Çareserî hem hêsan e û hem jî zahmet e. Ev ne tenê di nava gelê kurd û tirk de ye. Problem bûye mijara çar dewletên mezin ku nasname û hebûna kurdan red û înkar kirine. Qebûl nekirine. Girtin, kuştin, koçberî û zilm û zordarî kirine. Milletê kurd li ber xwe daye. Nêzî 50 hezar keç û xortên kurd jiyana xwe ji dest daye. Ji aliyên din jî ji asayîş, leşker, polês û sivîlan 10 hezar kes jiyana xwe ji dest dane. Bi hezaran keç û xortên kurd cesedên wan nehatine dîtin. Herêma me bi aborî, çandî, siyasî, psîkolojîk û sosyolojîk serûbin bû, gel kete meqera şiddetê. Di pirsgirêka kurd de hem dînamîkên hundir û hem jî yên derve tevlî dibin. Hikûmet û partîyên berê siyaseta wan rojane û li ser esasê zilm û zorê bû. Bandora siyaseta neyînî û rojane li ser hemû beşên civakê kir û tesîrên mezin hiştin. Hewalekirina pirsgirêka kurd ji bo metodên asayişî û nebûna îradeya siyasî ne aqilane bû. AKP ev pêvajo da destpêkirin û ez jî di nav de bûm. Ez gelek caran di nava herdu aliyan de bûme qasid, hatina gerîlla ya Deriyê Xabûr û şerê Qerekola Reşadiye ew pêvajo hilweşand. Ji ber ku pirsgirêk mezin e, hem ji navxweyî û hem jî ji derve îhtimal e provokasyon çêbibin. Li herdu aliyan jî kesên ku ji bo berjewendiyên xwe yên şexsî naxwazin ev pirsgirêk çareser bibe îhtimal e hebin. Di ruhê van pirsgirêkên bi vî rengî de provakasyon heye û li dinyayê mînakên wê pir in. Divê îradeya siyasî hebe ji bo ku ev pirsgirêk çareser bibe. Sêşema çûyî Serokwezîr Davutoğlu; "Me çareseriya pirsgirêka kurd xistiye navenda siyaseta xwe" ev hevok hevî dide.

***Ji hêla Tirkiyê ve têkiliyên we bi kê re bûn?***

Rasterast bi Serokwezîr, Wezîrê Derve, Serkomar û burokratan re. Bi wan dînamîkên xwedî bandor re dan û standinên min hebûn.

***Di van çend mehên dawîn de li Cizîrê hin bûyer qewimîn. Hûn wekî yek ji Cizîrê çawa dibînin kî wir tev dide?***

Ji bo van buyerên Cizîrê jî divê ev sî salên dawîn baş bêne tehlîlkirin. Cizîr mezin bûye, gelek şer, qehr, pevçûn û kuştin çêbûye û li ser Cizîrê bombe hatine barandin. Di salên 1989'an û 94'an de hefteyê çend caran şer çêdibû di nava bajêr de. Di vî şerî de gelek xelkê sivîl hatin kuştin. Hatin revandin. Hin ji wan xistin bîrên asîtê û hwd. Ev jî kînekê çêdike. Li alîkî din jî yên ku ji çareseriya pirsgirêka kurd nerazî û yên ku naxwazin çareser bibe herêmê tev didin.

***Kî ne ev ên ku naxwazin?***

Paradigma dewletan zû bi zû nayê guherandin. Dibe ev şaxên dewletê yên bin erdê jî li nav hev bidin. Ji ber ku hê jî di akademî û mektebên leşkerî de dersên Kemalîzmê têne dayîn. Wekî din di nava Partî û Cemaeta Fethullah Gülen de şer heye niha. Destê kê di berîka kê de ye ne diyar e. Ji derve jî mumkin e bê tevdan. Ji bo ku Cizîr di nava sînorên du dewletan de ye îstixbaratên dinyayên jî van bûyerên bi vî rengî dixin taqîbê. Ji bo berjewendiyên xwe yên siyasî tev didin. Vêca ev tiştên wiha dê çêbibin. Li hemberî provokasyon û sabotajan tişta herî girîng û panzehîra wê îsriqrar û îradeya siyasî ye.

***Hukumeta Bexdayê wekî şerekî veşartî li hemberî hikûmeta Kurdistanê dimêşîne. Sedema vî şerî çi ye? Çima Bexda astengiyan ji kurdan re derdixe?***

Bi rastî jî helwesta Bexda xelete û bêwefayî ye di heqê Kurdan de. Dema rejîma Beas hilweşiya herkes perîşan bû, tenê xerîteyeke kurdan hebû. Di wê dema nexweşiyê de Kurdan bi destê Şîî, Sunnî, Tirkmen û hwd. bi destê her kesî girt. Kurdan bi destê xelkê Iraqî girt. Ez bi xwe şahid im. Serok Barzanî li ser esasê dostbîniyê sîyaseta xwe meşandiye û gelekî arîkariya wan kiriye. Nûrî Malikî der heqê Kurdistanê de xeletiyên mezin kirin. Siyaseta xwe li ser esasê mezhebî meşand.

***Ev DAIŞ ji ku derket? Kî ne û çima êrişî kurdan dikin?***

Dixwazim pêşî vê bêjim, herçiqas DAIŞ vî tiştî li ser navê îslamê bike jî di rastiyê de tu eleqeya wê bi dîn re tuneye. Niha ji bo Kurdistanê tehlîkeya herî mezin DAIŞ e û ew siyaseta xaricîtiyê dimeşîne. Divê em navê vê lê bikin. Derdê DAIŞê ew e ku kurd di herêma xwe de muweffeq nebin. Yanî DAIŞ Bees bi xwe ye. Li gorî texmîna stratejîstên dinyayê tevî DAIŞ berê xwe dabû Bexdayê. Bê çawa çêbû bi 180 dereceyî zivirî û berê xwe da kurdan. Ev jî du sedemên wê hene: yek jê nêzîkbûna herêma Kurdistanê û Tirkiyê ku salên dirêj eqda enerjiyê çêkirin, a din jî axaftina Serok Barzanî ji bo serxwebûna Kurdistanê bû. Ji ber ku heta niha siyaset û mentelîta Serok Barzanî bi duristî û eşkere ye. Rast e ji xeyrî wî siyasetmedarên din jî hene li Kurdistanê, helbet ew jî gelekî bi kêrhatî û dilsoz in lê doza Kurdî bi rêya Barzaniyan ketiye rojeva dinyayê û îro dinya Serok Barzanî wekî nûnerê kurdan dibîne. Meşrûbûna kurd û Kurdistanê di bin sewq û îdareya malbata Barzanî de çêbûye. Divê ev wiha bê zanîn. Herêma Kurdistanê her tim destê dostaniyê dirêjî hemû cîranên xwe kiriye. Lewma baweriya dinyayê bi malbata Barzanî heye. Di dawî de vê jî bêjim: siyaseta xelet ya hikûmeta Bexdayê DAIŞ xurt û geş kir, li alîkî din jî bi êrişa DAIŞê hemu partî, sazî û rêxistinên kurdan nêzî hev bûn. Di nav kurdan de ji bo yekîtiyê germahiyek çêbû û çekdarên kurd mil bi mil li hemberî DAIŞ'ê şer dikin ev yek ji hêla kurdan ve gelekî erênî ye.

***Berî şerê DAIŞ'ê çêbûna kongreyê di rojevê de bû hûn çêbûna wê çawa dibînin? Ji bo pêşeroj û yekîtiya nav kurdan çi feydeyên kongreyê hene?***

Ji bo kurdan gavek erênî ye ez vê qebul dikim. Lê belê divê li ser esasek welê çêbibe ku kes neheqî li kesî neke. Herkes li gorî hêza xwe bê têmsîlkirin. Divê kes nebêje were têkeve bin bandora min, ev yek şaşîtî ye. Li gorî qenaeta min zahmet e çêbûna kongreyê.

***Çima zahmet e?***

Di siyaseta Rojava de hin mînak çêbûn di nava PYD-PKK û ENKS'ê de. Hin partiyên kurd veciniqîn û navber dane kongreyê. Divê ev tiştên wiha nebin. Divê bi samîmî û bi baweriyeke kurd û Kurdistanî, ne di bin bandora partiyekê an îdeolojiyekê de çêbibe.

***Hûn pêşeroja Rojhilata Navîn çawa dibînin?***

Di vir de têkiliyên Tirkiye û kurdan gelekî girîng in. Kengê di Rojhilata Navîn de têkiliyên wan xera bûne herdu aliyan jî zerar jê dîtiye. Kurdan gelek ked ji bo Tirkiyê daye di hemû şerên wan de li kêleka wan bi neyarên wan re şer kirine. Bi rastî ji hêla Tirkiyê ve qîmetgirtina kurdan ji bo berjewendiyên wan e. AKP ferqa vî tiştî kir û qîmet da têkiliyên herdu aliyan, divê ev jî neyê înkarkirin.

***HDP'ê biryara xwe da ku wekî partî tevlî hilbijartinê bibe. Li gorî we ev biryar rast e? Dê karibe benda sedî 10 derbas bike?***

Ew biryar a wan e. Divê em rêzê ji biryara wan re bigirin. Li Tirkiyê derbaskirina benda sedî 10 gelekî zehmet e. Disa ji, biryar ya wan e. Helbet wan jî hîsabên xwe kiriye.

***Gotinên we dawî çine?***

Temamê partî û rêxistinên Başurê Kurdistanê piştî êrîşa DAIŞ'ê hevî dikir in ku Tirkiye arikarî û xweditiyek mezintir bike, ji bo vê bêdengiyaTirkiye hêviyên kurdan şikestin. Li gorî qeneeta min ev heviyên şikestî bi çend tiştan sererast dibe.Yek jê, divê piştî hilbijartinan Serokwezîr bi çend Wezîrên xwe re herin Hewlêrê dilê kurdan xweş bikin. Ya din jî, niha li gelek welatên dinyayê bi fermî nûnertiyên Hukumeta Herêma Kurdistanê (HHK) heye mixabin hêjî li Tirkiyê ev tişt tuneye, tenê nûnertiyên partiyan hene divê rojek berî rojekê li şuna nûnertiya partiyan, nûneriya HHK'ê bê vekirin. Hebuna dînamîkên heyî yekîtiya kurd tirk mecbur digire, alternatifa vê yekîtiyê şer û siyaseta xwînê ye. Di vî babetî de divê Tirkiye xwedî îradeyek xurt be, arikariyêk zêdetir bide hukumeta Kurdistanê.

### Mirov dikare bêje pirsgirêka sereke şandina petrolê ye?

Ev mafê Kurdan e û di destûrê de jî heye. Erê rast e ku pirsgirêka sereke ye. Ji ber ku Kurdistan û Tirkiyê ji bo 50 salî eqd çêkirin û ev eqd bu sebebê nerazîbûna hikûmeta Bexdayê. Enerjî tiştekî wisa ye ku ji hêla aborî ve çi qasî baş be ji hêleke din ve jî bela ye. Em bixwazin nexwazin enerjî di bin tekela dewletên bihêz û mezin ên wekî Emrîka, Ingîltere, Rusya û hwd. de ye. Li Rojhilata Navîn jî du dewletên xurt hene, yek jê Îran û ya din jî Tirkiye ye. Helbet di nava wan de ji hêla aborî, siyasî û enerjî ve jî reqabet heye. Lazim e herdu dewlet jî li Iraqê bi taybetî jî li ser kurdan ne bi siyaseta mezhebî li ser bingehê edaletê siyasetê bidin meşandin. Bi vê rêbazê pirsgirêk kêm dibin, jiyan xweş dibe. Lê ez bi xwe ji wan bawernakim ku edaletê bingeh bigrin.



# Peytexta dilê kurdan

# Amed



**Welat Baz**

Amed li Rojavayê Bakûrê Kurdistanê dikeve. Bajêr di nav hêlîlarên (merîdiyen) bakûr ê 37 û 38'an û di nav hêlîpanên (paralel) rojhilat ê 40 û 41'an de cîh digre. Pîvana xaka Amedê 15. 354 km² ye.

Erdîma Amedê ji % 37 bilindahî ne. Çiyayê herî bilind di nav tixûbê Amedê de Andok ê (2.830m). Çiyayê Spî, Mîhrab, Zulkufûl, Wîşîn, Gerdîlek, Seryekşan, Çîmyenî, Suplîz û Çiyayê Qerej, wek dîwarên xezayî li dora Amedê lefiyane. Bajêr ji deryayê 650 metre bilind e.



Piştî ku quntarên çiyayan nizm dibin, deştên derûdora Amedê destpêdikin. Deşta Gewran an jî Deşta Erxenê, ku 15 hezar hektar fireh e, lê lazût û garis tê çinîn. Deşta Qerexan ku 10 hezar hektare, ber bi Çiyayê Qerej ve dirêjdibe û bi gelemperî kevir e. Deşta Diyarbekir jî ku 40 hezar hektar e, piranî kevir e. Kevirên van deştan ji teqîna wolqana Çiyayê Qerej pejiqîne.

Deşta Kîkan ku ji Çinarê destpêdike 25 hezar hektar e û deşta herî bibereket e. Behremkî jî deşteke ku ji kiştûkalê re dibe û ber bi Bismilê ve dirêj dibe. Ji bilî van deştan, li kêleka Dîjlê; Deşta Pembû, Deşta Sînanê, Deşta Farqînê û gelek deştên biçûk jî hene.

Dîjle, Îlûh, Ambar, Qolxane, Madrab, Medya, Sînan û Çungûş çemên Amedê ne. Li ser van çeman, bendên wek Karakaya, Kralkızı, Dicle, Silvan, Devegeçidi û Çinar hatine danîn.

Ji xaka bajêr genim, ceh, nîsk, şadanek, nok, pembû, titûn, zebeş, petêx, trî û gelek cûrên sebze tê çandin. Li gor hijmarên fermî li Amedê li ser 157 hezar hektar ax pembû tê ajotin. Dîsa aboriya bajêr ji % 80 li ser kiştûkalê ye. Hêza kar ji % 70 di vê sektorê de dixebite.

### *Rêvebirî*

Amed li gor pergala rêvebiriyê parêzgeh e. Bi navên Farqîn (Silvan), Pasûr (Kulp), Licê (Lice), Pîran (Dicle), Erxenî (Ergani), Çinar, Çingûş (Çüngüş), Çêrmûk (Çermik), Egil, Bismil, Hezro (Hazro) û Hênê (Hani) 13 navçeyên Amêdê hene. 680 gund jî bi bajêr ve girêdayî ne. Nifûsa bajêr bi koçberiyên dawîn gihîşt nêzî du mîlyonan. Amed bi vê nifûsa xwe, li Kurdistanê piştî Kermanşah û Ruhayê bajarê herî mezine.

Cîranên Amedê, Batman, Ruha, Mêrdîn, Mazra, Mûş, Bîngol, Semsûr û Meletî ne. Niştecihên Amedê hemû Kurdin. Li bakûrê Amedê li navçeyên Pîran, Hênê, Licê, Çermûg û Çungûşê kurdên dimilî (zaza), li çend gundên Nawenda Amedê, kurdên Elewî û Ezidî, li cîhên din jî Kurmanc dijîn. Zaza û Kurmanc ên Amedî hemû Sunî ne.

### *Nav*

Dîroka nivîskî, bajarê Amedê, bi derketina însan a ser dika jiyana civakî ve derbasî qeydan dike. Li gor lêkolîn û berhemên antîk ku hatine tesbîtkirin, li herema Amedê berî zayîna Îsa di sala 7250'an de jiyana civakî destpêkiriye. Rêçên vê dema neolîtîk, 50 km dûrî Amedê, li nêzî Gundê Hîlarê, li Taxa Berçem hatiye dîtin. Li Farqînê li şikeftên Hasûnê û li Navça Egilê jî rêça jiyana kevn hatiye tespîtkirin.

Dîrok, yekem car navê peytexta kurdan, wek 'Amed' an jî 'Amîd' qeyd dike. Ev nav bi awayekî nivîskî yekem car li ser doxa şûrê Qralê Asûriyan Adad Nîrarî hatiye neqşandin. Ev şûr, b.z ji sala 1300î maye.

Navê bajêr di berhemên kevn ê romayiyan de jî, wek 'Amîdo' an ji 'Amîda' derbas dibe. Dîsa ev nav di çavkaniyên tirkan de 'Kara Amîd/Ameda Reş' e. Reşbûna Amedê ji kevirên bazalt ê derûdora bajêr tê. Ev kevir di mîmariya bajêr de hatiye bikaranîn. Li ser navê bajêr gelek efsane jî tên gotin.

Di dema Xelîfe Omer, Artêşa ereb berê xwe dide Kurdistanê. Amed ji alî leşkerên Xalid bîn Welîd ve tê zeftkirin. Heta wê demê li Amedê baweriyên di nav gel de, Bahdînî (Zerdeştî), Îsewîtî û Cihûtî ye. Piştî serdestiya ereban, hin eşîrên ereb jî hatin derûdora Amedê. Yek ji van eşîran bi navê 'Bekr' dihat naskirin. Cîhê ku Eşîra Bekr lê konên xwe daniye di nav alema ereb de wek, 'Diyarê Bekr' hatiye binavkirin û di pêvajoya dawîn de ev nav ketiye dêlva navê Amedê. Piştî sedsala 8'an êdî bi gelemperî navê nûh hatiye bikaranîn.

Di dema Osmaniyan de jî navê ku ereban li bajêr kiriye hat pejirandin û Amed wek 'Diyarbekir' hat naskirin. Piştî Komara tirk hat damezirandin, li Kurdistanê navên deveran hatin guhertin. Û peyva Diyarbekir jî, bi emrê Mustafa Kemal wek 'Diyarbakır' hat gewirandin.

### *Dîrok:*

Herema Amedê, li ser rêyên ku heremên mezin bi hevre girêdide, hatiye avakirin. Rêyên ku ji Anatolya û Sûrî dihatin, ji ser Amedê digîştin hev û ber bi Îraqê ve diçûn. Dîsa rêyekî ji Amedê ji ser Xarpût û Sêwasê berê xwe dida Derya Reş. Rêyekî din jî Amedê ji ser Bêdlîs û Wanê ber bi Îran û Azerbaycanê ve diçû. Ji ser Dîjlê ve jî bi kelekan heta Mûsil, Bexda û Basrayê çûndin û hatin hebû.

Ji ber van taybetiyên Amedê, bajêr di demekî kin de bû nawenda karwan û bazirganiyê. Piştî ku di sala 349'an de sûra Amedê hat avakirin jî, bajêr bû newenda hemû heremê. Û helbet hedefa hemû artêşan jî.

Amed, ji ber ku li ser rêyan bûye, karwanên bazirganiyê jî di seyrûseferên xwe da li bajêr sekinîne. B.z di sedsala 18'an de karwanên bazirganên Asûrî dema diçûn Anatolyê serî li Amedê jî dixistin. Ev bazirgan nivîsê jî bi xwe re tînin bajêr û bi hatina wan, Amed dikeve nav dîroka nivîskî.

Li gor belgeyên dîrokî xwediyên Amedê ê yekem, Hûrrî-Mîttanî ne. Ev şaristaniya ku b.z di salên 3 hezaran de derketiye ser dikê, piştî sedan sal, wek dû dewlet perçebûne û paşê jî di sedsala 14'an de ji alî Asûriyan ve hatine têkbirin. Îro jî li ser hin zinnarên nêzî navçeyên Licê û Egilê taswîrên hukumdarên Asûriyan ku Dewleta Hûrrî-Mîttanî xerakiribûn hene.

Di salên derûdora 600'an de desthilatiya Medan li heremê belav dibe. Împaratorê Med, Keyaksar di sala 612'an de êrişê nawenda Împaratoriya Asûr, Nînowayê dike û wê dewleta cîhanî dipelişîne. Artêşa Med, tixûbên dewleta xwe heta nav Anatolyê fireh kiribû. Medên ku bav û kalên Kurdan e, li Amedê desthilatiya xwe heta salên 550'an didomînin.

Piştî vê demê Pers derketin dika dîrokê û Amed vê carê jî ket destê persiyan. Persî vê heremê ji sed salî zêdetir, heta hatina Îskenderê Mekedonî di destê xwe de girtin. Persî we demê Bahdînî (Zerdeştî) bûn. Dema hakîmiyeta Persiyan li heremê belav bû, ew ketibûn Nisêbînê jî. Gelê bajêr ku wê demê bi navê Nisîbîs dihat naskirin, koçê Amedê kirin. Hatin li dora Amedê konên xwe danîn. Hukumdarê Amedê ji bo parastina wan sûra Amedê fireh kir. Ji Derê Çiyê heta Derê Ruhayê, ji wir heta Derê Mêrdînê dîwarekî avakir û wan jî girt nav bajêr.

B.z di 331'an de Amed ji alî Artêşa Îskenderê Mezin, ji Persiyan hat sitendin. Piştî mirina wî, Amed û derûdora wê çend sal di bin hukumdariya fermandarên Îskender û xelefên wan de ma. B.z di sala 140'an de jî bajêr carek din dest guhert. Xwediyên bajêr ê vê carê jî Part bûn. Dewleta Part bi êrişên Saqayan têk çû.

### *Dema Romayiyan*

Piştî ku Tîgranokerta ji aliyê fermandarê Romayî Lukullûs ve tê dagirkirin, talan dibe û xeradibe. Amed bi vê bûyerê re carek din dest diguhurîne û b.z di sala 69'an de dikeve destê Romayiyan. Hukumdariya Romayî li Amedê heta p.z 639'an didome. Amed nêzî 700 sal di bin desthilatiya Împaratoriya Roma de dimîne. Di vê demê de herçiqas çend car dîsa dest guhertibe jî, bi gelemperî hakimiyeta romayiyan heta dema Sasaniyan ajot. Di vê pêvajoyê de Amed gelek car bû qada şeran.

Piştî zayînê di sala 358'an de ku Amed di destê romayiyan de bû, bû hedefa êrişa Împaratorê Persiyan Şapûr. Şapûrê Dûyem ji Împaratorê Romayê Konstantîn, Amed jî tê de hemû Kurdistanê duxwest. Piştî ku daxwazên wî hatin redkirin, şer derket. Şapûr tevî artêşa xwe hat ber Kela Amedê. Kela Amedê deh sal berî vê dorpêçanê hatibû avakirin. Hêzên bajêr di bin fermandariya Gurûmbates de bûn. Di dema dorpêçana Amedê, Dîroknûsê Antaqyayî Emanûs Marcelînûs jî li Amedê bû. Marcelînûs, şerê Amedê ê 1644 sal berê, wiha tîne ziman:

'Di berbangê de, gir û deştên dora Amedê, qasî ku çavên mirov bibîne tijî siwar bûbû. Mîxferên serê wan dibiriqî û tev zirxkirîbûn. Qralê wan bi taca xwe ya zêrrîn û hespê xwe yê bilind li pêş wan bû. Ber bi kelê ve hat. Duxwest bi parazvanên li ser sûrê re xeber bide. Lê rimekî ku ji kêlê hat avêtin, kincê wî yê biha qetand. Li ser vê yekê paşve kişiya û bû sedemê mirina bi dehhezaran însanî. Me heta tariya şevê şer dikir. Ev bi rojan berdewam kir. Kî bi destê wan keta, wek dawaran bi şûran wî jêdikirin.'

Piştî 150 salên din Romayî û Sasaniyên berdewama Persiyan cardin ji bo Amedê şerkirin. Di Îlona sala 502'an de Împaratorê Sasanî Qawad, dor li Amedê girt. Şerê di nav artêşên Sasanî û romayiyan de 5 meh ajot. Li gor Mar Yeşûa ji herdû aliyan 130 hezar kesî di vê dorpêçanê de jiyana xwe wenda kirin. Li ber Çemê Dîjlê û Derê Çiyê, ji laşê miriyan çend girên mezin çêbûbûn. Bajêr hat talankirin, dêr hatin şêlandin, kesên ku xwe veşartin û ê pîr ne têda, hemûyan bi xwe re birin. Bajêr vala bû.

### *Dema Îslamê*

Desthilatiya Sasaniyan li Amedê 130 sal ajot. Împaratorî her çû, lewaz bû. Di vê demê de Îslamiyet jî belav dibû û artêşên ereb, heta Kurdistanê seferan dikirin. Di sala 639'an de rêvebiriya Amedê di destê jineke de bû. Ew jin bi navê Meryema Dara dihat naskirin. Xelîfe Emer di vê salê de artêşekî di bin serokatiya Xalid bîn Welîd de şand ser Sasaniyan û Amed jî tê de Kurdistanê zeft kir.

Amed piştî ku ji alî ereban ve hat stendin û talankirin, bajêr wek parêzgeh hat pejirandin û di sala 644'an jî wek 'Diyarbekir' hat binavkirin.

Piştî mirina Hz. Elî di sala 661'an de Mûawiye bû xelîfe û Diyarbekir ket bin desthilatiya Emewiyan. Di van salan de li herema Amedê di nav hêzên Mezheba Şiî û Xîlafeta Emewiyan de gelek car şer derket. Xelîfê Emewî Abdulmelîk ferman da ku Amed jî tê de, li hemû heremên Muslumanan, erebî wek zimanê fermî bê bikaranîn. Di sala 750'an de desthilatiya emewiyan cîhê xwe da Abbasiyan. Amediyan xelîfetiya Abbas qebûl nekir û li dora Îshaqê Ruhayî civiyan. Birayê Xelîfe Abbas, Mansûr serhildana Amediyan tefand û bû Waliyê Amedê. Piştre Merwaniyan Amedê zeft kirin. Di sala 984'an de Amed ket destê Merwaniyan û nêzî sed sal di destê vê hukumdariya Kurd de ma. Di vê pêvajoyê de tirkmen, Oxiz û Bîzansiyan gelek car seferê ser Amedê kirin, lê seferên wan bê encam man.

Di sala 1085'an de Siltanê Selçûqiyan Melîkşah artêşeke mezin şand ser Amedê û bajêr bidestxist. Piştî ku bajêr ket destê wan, çend car di nav begên wan de dest guhert.

Di sala1183'an de Selehedînê Kurd, an jî bi navekî din Selehedînê Eyûbî dora Amedê pêça û bajêr ji tirka stend. Amed heta sala 1240'an di destê Eyûbiyan de ma û paşê ket destê Keyxusrewê Selçûqî.

Li ser Amedê heta 1502'an hukmê Selçûqî, Artûqî û Aqqoyiniyan dom kir.



Di vê nawberê de di sala 1257'an de bajêr ji alî Eyûbiyên Farqînê ve hat girtin û dû sal di destê wan de ma. Piştî Eyûbiyên Faqrînê, Îlxaniyan demekî dest danî ser bajêr û Amedê li ser navê Artûqiyan birêvebir. Di dema Artûqiyan de, di sala 1394'an de jî bajêr alî Artêşa Tîmûrlenk ve hat dagirkirin. Tîmûr piştî ku Amedê girt, teslîmê Aqqoyuniyan kir.

Ber bi salên 1500'an ve, li heremê Dewleta Sefewî her diçû xurt dibû. Di encama şerê Şurûr de Sefewiyan zora Aqqoyiniyan bir û di sala 1507'an de jî Amed û Kurdistan ket destê Sefewiyan.

### *Dema Osmaniyan*

Împaratorê Osmanî Yawûz Siltan Selîm di Şerê Çaldiranê de li dijî Şah Îsmaîlê Sefewî biserket. Yawûz, mîr û begê Kurdan li dijî Sefewiyan fît kir û hinek ji wan kişand alî xwe. Gelê Amedê bi xîretên Şêx Îdrîsê Bedlîsî, li dijî rêvebiriya Sefewiyan serhilda û karmendên wan ji bajêr avêtin. Gelê Amedê ê Musluman, bi gelemperî ji Mezheba Sunî bûn. Bavê Îdrîs, Husameddîn Elî li Kurdistanê şêxekî naskirî bû û gelê Amedê bi piranî mirîdê wî bûn. Dora bajêr ji alî Artêşa Sefewî ve hatibû pêçan. Îdrîsê Bedlîsî li herêmê li ser navê Yawûz 25 begên Kurd civand û xwest Kurdistanê bi Osmaniyan ve girê bide. Helbet hinek begên Kurd jî duxwestin bi Sefewiyan re, yanê bi Şah Îsmaîl re bimînin. Şêx Îdrîs ji bo Yawûzê Osmanî, Kurd Beg jî ji bo Şah Îsmaîlê Sefewî li dijî hev şer dikirin.

Di encam de artêşa ku Yawûz şand ser Kurdistanê di sala 1515'an de gihîşt heremê û ket Amedê. Li gor Ewliya Çelebî, dîroknûsên Romî, Fetihnameya Amedê wiha nivîsandibûn; "Bi destê Mihemed Paşa, bi alîkariya Mele Îdrîs û bi fehta Selîm Xan."

Osmaniyan piştî dagirkirina Kurdistanê, welatê kurdan bi navê, Şarêzor, Hekkarî, Mûsil û Diyarbekir veqetand çar eyaletan.

Amed ku bûbû nawenda Eyaleta Diyarbekir, wek 11 sancax, 8 mîrnîşin û 5 hukûmet hatibû tanzîmkirin. Di nav van sancaxan de Farqîn, Xarpût, Hesenkêf, Siwêreg, Sêrt, Nisêbîn, Çemîşgezek û Sîncar jî hebûn. Hukumdarên eyaletê tev Kurd bûn. Kurdistan herçiqas di warê siyasî de bi Osmaniyan ve girêdayî bû jî, di karê navxwe de serbixwe bû û ji alî serekên Kurdan ve dihat birêvebirin. Berdevkên siltanên Osmanî li ser Amediyan ne xwedî bandorekî mezin bûn û gelek eşîr û serekên Kurd li dijî begên eyaletê, yanê berdevkên siltan her tim serhildabûn.

Ev rewşa Amedê bi dehan sal ajot. Padîşahên Osmanî car caran ji bo Amedê û eyaletên Kurdistanê ê din têxin rêzê bi artêşên mezin sefer dibirin ser wan. Wek mînak Mîgranî ku bi Eyaleta Diyarbekir ve girêdayî bû, di sala 1777'an de serhildabû. Li ser vê yekê Siltanê Osmanî di fermandariya Uzun Abdullah Paşa de 30 hezar leşker şand ser wan. Lê eşîrên kurd û ermenî bihevre vê artêşê têk birin. Dîsa Temûr Paşayê Serokê Eşîra Mîllan bi dehan car bi hêzên waliyê Diyarbekirê re şer kiriye û walî tu car biserneketî ye. Di dawiya sedsala 16'an de jî gelek car di nava hêzên waliyê Amedê û eşîrên Kurd de şer derketiye û vê rewşê herwiha dom kiriye.

Li Amedê rêvebiriyeke bidad û mekanîzmayekî dewletî tunebû. Ji ber vê yekê li Amedê di sala 1757'an de xela destpêkir. Û çend salan ajot. Ji sedema xelayê nifûsa Amedê ket. Gelekan koç kir.

Di sala 1819'an de li nav bajêr li dijî Waliyê Osmanî Behram Paşa serhildanekî derket. Di dema serhildanê de, ku çar meh ajot, nîvê bajêr xerabû, nîvê nifûsê koçkir, gelek kes hatin kuştin. Di van salan de Mîr Bedirxan li Botanê dewleteke damezirandibû. kurdên Amedê jî bi Dewleta Bedirxan ve girêdayî bûn û wî wek padîşahên xwe dipejirandin. Dîplomatekî Îngilîz di bîranînên xwe de wan rojan wiha qeyd dike: ,Rêyên nav Amed û Cizîrê pir biewle bûn. Helbet ev, ji tundbûna desthilatiya Bedirxan dihat.

Di sala 1895'an de di meha Mijdarê de bi fîta Waliyê Diyarbekirê Enis Paşa, li dijî ermenî û Suryaniyên bajêr hatin qirkirin. Ji qetlîamê Alayên Hemîdî û leşkerên Osmanî berpirs bûn. Di encam de bi sedan ermenî û suryanî hatin kuştin û mal û dikkanên wan talan bûn.

## Çemê bihûştê Dîjlê

'Ji bihûştê çemekî dizê û paşê li çar şaxan belav dibe. Yek ji wan Dîjle ye...'

Di pirtûka pîroz Tewratê de Çemê Dîjle bi rêzên jorê wek avekî bihûştî tê binavkirin.

Li Kurdistanê yek ji feyza însan û xwezayê kû li ser xak û dilê însanên vî welatî xêrûbêr belavdike ev çem e. Şaristaniyên ku li Kurdistan û Mezopotamya şax dane, wek hêlîna yekem kevîyên Dîjle û Firadê ji xwe re kirine welat.

Dîjle di rêvîngîya xwe ya ku li bakûrê Kurdistanê li lûtkeyên çiyayê Şerefdîn destpêdike û piştî 2000 km li kendava Basra bi dawî dibe. Çem bi dorê ji bajarên wek Maden, Xezar, Amed, Farqîn, Çinar, Bismil, Eskîf, Hezex, Kerboran, Cizîr, Mûsil û Bexdayê derbas dibe.

Tê gotin ku navê Dîjle di demên berê de Dûçîle yanê 'dû mil, dû şax' bûye. Ji ber ku çem ji dû çavkaniyan dizê, kurdên berê vî navî li çemên xwe kirine.

Ev çemê ku îro ava wê bi dehan bendavan hatine astengkirin û li keviyên wê bi dehan cûrên nebatên avî tên çandin wek çavkaniya jiyana şaristaniya moderne jî.

Helbet bajarê ku bi Dîjlê tê naskirin Amed e. Mirov ji dûri ve nêzî kuntarên kela Amedê bibe dengê xumîniya Dîjlê dibîhîse. Tîrêjên rojê li ser çem wek pêpelûka direqisin. Dengê avê aramî dide mirov. Wek kilamekî bi aheng ji kûr ve distrê.

Awazên Dîjlê wek ji dehlîzên dîrokê ve werin, kûr e. Çem dema digîje bin siya kela bajêr, dibetile. Bêhemdê xwe diherike. Mirov baş bala xwe nedê, dibê qey sekiniye, razaye. Lê ger mirov ji zimanê Dîjlê fahm bike, wê bizanibe ku Dîjle, bi Kela Amedê re dipeyive. Jê re qala serpêhatiyên xwe dike.



# Li Bakur rêxistina nû ya jinên kurd

Dilan Yaruk



Piştî yekemîn, Tevgera Jinên Demokrat û Azad (DOKH) a li Amedê jinan biryara feskirina DOKH'ê dan û di bin bana Kongreya Jinên Azad de (KJA) dest bi xebatan xwe kirin. Bi vê mebestê ji gelek welatan jin beşdarî kongreya DOKH'ê bûn. Parlementera HDP'ê ya Êlihê Ayla Akat Ata, Hevseroka DBP'ê Hafize İpek û Seroka Însiyatifa Dayikên Aştiyê ya Şaxa Amedê Havva Kıran ku beşdarî kongreya DOKH'ê bibûn û amadekariya kogreyê kiribûn di derheqê fesihkirin û damezrandina nû de ji BasNûçe'yê re axivîn.

### KJA wê mezin bibe

Parlementera HDP'ê ya Êlihê Ayla Akat Ata da zanîn ku wê meclîsa KJA'yê ji 101 kesî pêk bê û dê meclîs bi xebatên xwe derkeve pêş û dê li hemû navend û nevçeyan kar bikin. Ata wiha berdewam kir: "Meclisa ku ji 101 kêsî pêk tê xwe derxe pêş. Em ê li navend û navçeyan lekolînan bikin. Li  ku pisrgirek hebe, ê me dest dîrejî wir bikin. Li her dêrê jiyana jinan di bin zor zêhmetiyan deye. Em  dixwazin bibin deng ji jinan re û em ê hêza jinan derxin hol ê.

Parlementer Ata her wiha da zanîn ku beriya damezirandina KJA'yê jin di bin bana DOKH'ê de bi rêxistin bûne, çalakiyên xwe li dar dixistine. Ata sedema feshkirina DOKH'ê û danîna KJA'yê jî wiha eşkere kir: "Jin êdî bi fikr û ramana xwe di nav civakeda ne. Berê saziyek jinan tenê hebû. Lê ew kêm bû. Ew ji xebata jinan re kêm dibû. Em êdî di bin sîwana KJA'yê de dicivin. Di kongreyê de em li ser rola jinê ya civakê û gihandina jinan sekinin. KJA wê bi angaşta azadiyê mezintir bibe. Û dê di peşaroje de derkeve hol ê."

### Jinên kurd ji cihanê re bûne rêber

Hevseroka DBP'ê ya Amedê Hafize İpek jî bal kişand ser xebatên dawî yên jinan û ragihand ku hilbijarin tê û jin  dê bi rengên xwe nûneriya xwe bikin. İpek her wiha da zanîn ku berxwedana jinên kurd li hemû dinyayê deng vedaye û hemû jinên berxwedêr ên cihanê jî piştigiriya jinên kurd dikin û ji gellek welatan jin beşdarî kongreyê bûne.

İpek wiha domand: "Ji Amerîka, Iraq, Îran, Meksîka, Katalonya, Afrîqa û ji kolombiya jin hatin kongreyê. Me xwe gihand hemu jinen cihanê. Jinen  ku bûn mevanên mê axivin û gotin; 'em heyranê jinên kurd in.jinên kurd hemû ji jinên cihane re bûn rêbêr.

Hafize İpek di berdewamiya axaftina xwe de têkoşîna jinên kurd ya li Kobanê jî bi bîr xist û da zanîn ku jinên kurd bi berxwedêrî û dilêriya xwe berê hemû dinyayê dane xwe û ji jinên cihanê re bûne mînak û ewê di pêşerojê de Kobanê li hev bicivin. İpek gotina xwe wiha bi dawî kir: "Em dixwazin li Kobanêya ku jinên kurd lê berxwedan û têkoşînê dikin bicivin. Dibe ku di pêşerojê de em kongreya xwe li wir pek bînin. Wê ev rêxistina me wê ji cihanê re bibe mînak"

# Jin li her qadên jiyanê ne

Seroka Însiyatifa Dayikên Aştiyê ya Şaxa Amedê Havva Kıran jî dest nîşan kir ku jinên kurd bi pêşketin û rêxistinbûna xwe dengê xwe li cihanê belavkirine û ew dixwazin bi rêxistina KJA'yê re xwe bigihîninn hemû jinan û jinan ji bin pêkûtiyan derxînin. Kıran di berdewamiya axaftina xwe de eşkere kir ku wan rêxistina nû ya jinan mezin e û ji bo azadiya hemû jinan xebatan dike. Kiran wiha berdewam kir: "KJA rexistinek mezin e. Armanca vê rexistinê azadiya jinen cihanê ye."



Havva Kıran her wiha da zanîn ku jinên kurd li hemû qadên jiyanê doza zarokên xwe dajon û li wan xwedî derdikevin dê wan ji zindanan derxînin. Kiran binçavkirin û girtinên dawî yên ji hêla Hikûmeta Tirkiyê ve tên kirin jî bi bîr xist û wiha domand: Jinên kurd hedî hedî ber bi azadiyê dimeşin zarokên mê di zindanê de girtinê. Rexistina KJA'yê  têne nê li ser azadiya jina ye, azadiya ciwanen me jî pir giring e. Em bi rexistînêke mezin ketine rê."



Xêza me -  Ahmet Bilge






# Şer mermerê Amedê jî şikand

Kalê Badî



Mermerê Amedê ku di 15 – 20 salên dawî de di henardekirina dinyayê de serdema xwe ya zêrîn dijiya, bi destpêka 'Bihara Ereb' û şerê DAIŞ'ê re şikesteyeke mezin xwar. Lê li gel van neyênîtiyan jî Serokê Komeleya Mermervanên Amedê Zekî Tûtal dibêje ku ji ber bazarên dinyayê yên qadên wek Hindistan, Amerîka û derên din çalak in, hemû şirîkeyên Amedê yên ku karê mermer dikin, dikarin stokên di destê xwe de bifroşin.

### Baştirîn mermerê dinyayê

Ji berê ve dihate zanîn ku kevirê çiyayên Amedê û derdora wê ji bo mermer bêhempa ye. Lê belê ji ber derfetên teknîkî û hişmendî ne gihîştibûn asteke baş, ev gencîne nedihate bikaranîn. Li gel ku li ser sirûşt û jiyana şêniyên gundên derdora ocaxên mermeran bandoreke neyênî dike û dibe sedemên hin fikaran jî, dîsa jî di 15 – 20 salên dawî de dest bi derxistina mermer hate kirin û di demeke kurt de mermerê Amedê bû yek ji baştirîn mermerên dinyayê.

Di derbarê vê mijarê de Serokê Komeleya Mermervanên Amedê Zekî Tûtal ji BasNûçeyê re axivî. Tûtal da zanîn ku di sala 1987'an de ji bo lêgerîna kevirê pihêt ê ku dikare mermerekî baş jê hilbere lêkolîneke berfireh hatiye kirin, lê belê ev lêkolîn ji ber bêxemiya berpirsyaran encameke baş pêk nehaniye, lê belê piştî sala 1995'an li Amedê karê derxistina mermer wek bayekî, bi lez destpê kirî ye û piştî vê salê mermerê Amedê bûye yek ji baştirîn mermerên dinyayê. Zekî Tûtal sedemên vê yekê wiha tîne ziman: "Di 1995'an de piştî lêkolînan derket holê ku mermerê Amedê hem ji ber yekrengiya xwe hem jî ji ber homojeniya xwe yanî ji ber ku tebeqeyên wî weke blokên mezin û bi heman rengî ne bala avahîsazên Tirkiye û dinyayê kêşa. Ji ber van taybetiyên xwe, ji projeyên mezin re pir goncav bû û ji ber vê yekê ji alî şirîkeyên mezin ên Çîn, Hindistan û Amerîkayê ve pir hate pejirandin. Yanî şirîkeyên avahîsaziyê yên mezin ên van welatan ji ber van taybetiyên mermerê Amedê berê xwe dane me û ji me daxwaza hinardekirina mermerê Amedê kirin"



### 'Mermerê Amedê tendurust e'

Zekî Tutal, kevirên ku dikare mermer jê bê hilberîn bi hevoka "Em ji hemû kevirên ku wek beşên mezin ku dikarin cîla bigirin re mermer dibêjin" anî ziman û da zanîn ku tiştên ku qelîteya mermer diyar dikin ciwanî yan jî pîriya kevir e. Tûtal got: "Ji ber ku kevirê Amedê kevirekî ciwan e û wek blokên mezin ên heman rengî tê dîtin, baştirîn mermer ji vî kevirî tê hilberîn. Kevirê Amedê ji ber ku kevirekî ji kilsa ku hatiye şidandin pêk tê, ziyanê li tendurustiya mirov jî nake. Ji ber van taybetiyên xwe ji her aliyê dinyayê daxwaziya hinardekirinê tê kirin. Bi van taybetiyên xwe her wiha pêdiviyên estetîkî û tendurustiyê jî dibersivîne û ji alî welatên pêşketî û şirîkeyên mezin ên ku karên xwe baş dikin ve pir tê pejirandin" Tûtal anî ziman ku ji destpêkê heta sala 2011'an, li dinyayê mermerê ku herî zêde tê daxwazkirin mermerê Amedê ye, lê belê her çiqas pîvana herî grîng qelîte be jî, di mermer de jî weke cil û berg û hemû alavên jiyana modêrn, moda heye û piştî sala 2011'an modaya mermerê Amedê hinekî kevn bûye. Tûtal wiha dom kir: "Di sektora cil û berg an sektorên din de çawa moda hebe, di mermerde jî ev yek heye. Yanî mermerekî ku demekî ji ber qelîte û hin pîvanên din ji alî mirovan ve tê hezkirin, piştî demeke din dikare ji alî wan ve neyê paxavkirin. Lewre êdî weke berê bala mirovan nakêşîne û hestên estetîkî û modayê baş nabersivîne. Çavê mirovan ji vî şêweyê mermer têr dibe û endezyar û avahîsaz berê xwe didin mermerên ku teşe û rengên wan cûdatir in. Ez dikarim bêjim ku mermerê Amedê niha wê dema xwe dijî, lê belê ew nayê wê wateyê ku wê ev rewş neguhere. Pirsgirêka mezin ev nîne. Ev rewş piştî demeke kurt dikare biguhere û mermerê Amedê dîsa bikebe rewacê, lê belê tiştê ku derba mezin li mermerê Amedê xist şerê ku piştî 2010'an li bakurê Afrîkayê û li rojhilata navîn rû da ye"

Serokê Komeleya Mermervanên Amedê Zekî Tûtal anî ziman ku di navbera salên 1995 û 2011'an de ji para hinardekirina mermerê ku li gelemperiya Tirkiyeyê tê derxistin ji % 15 ji Amedê hatiye dabînkirin lê piştî destpêka 'Bihara Ereb' ku bû sedem li gellek welatên ku mermer distendin şerên navxweyî derkebin, rêjeya frotina mermer jî daketiye û got: "Lê belê ev daketin xeteriyeke mezin nîne û bi rawestîna van şeran re wê rêjeya hinardekirina mermerê me jî dîsa bilind bibe"

### Bazara mermer a herî mezin Çîn e

Tûtal dide zanîn ku heta 2011'an bazara mermerê Amedê ya herî mezin Çîn bûye, lê ji ber angaştên gendeliyê ku bûye sedem Hu Jîntao postê serokiyê radestî Xî Jînpîng bike, piştî 2011'an wan pir kêm mermer hinardeyî Çînê kirî ye, lewre ji ber lêpirsînên gendeliyê, hemû krediyên ku hikûmeta Çînê arasteyî karsazên Çînî dikir rerawestiyane û ev yek bûye sedema aloziyeke aborî û bandoreke neyênî li mermerfroşan jî kirî ye. Tûtal diyar dike ku li Çînê, piştî guherîna seroktiyê, ev bazar hêdî hêdî xwe bi keys dike û ji nû ve bizivîneke aborî digeşîne. Tûtal di derbarê qadên mezin ên bazara mermer de axaftina xwe wiha dom kir: "Piştî Çînê, qada herî mezin a mermer Hindistan e û em bê navber mermer dişînin Hindistanê. Her wiha ji bazarên Ewropa, Amerîka, Brezîlya, Katar û her çiqas rêjeya wê daketibe jî, ji bazarên Rojhilata Navîn û Bakurê Afrîkayê re em mermer dişînin. Di destê yek fîrmayên Amedê de jî stokên mermeran nemane û hemûyan jî mermerên xwe frotine. Di demên herî neyênî de jî me mermer hinarde dikir. Heta beriya 'Bihara Ereb' qadên herî mezin ên Rojhilata Navîn û Bakurê Afrîkayê; Lîbya, Misir, Sûriye, Filistîn, Îsraîl, Iraq û Siûda Erebistanê bûn, lê belê li welatên ku şerê navxweyî destpê kirin hinardekirin pir kêm bû"

## Ji sedî 15 mermerê me diçû Kurdistanê

Zekî Tûtal di dawiya axaftina xwe de balê kêşa ser rêjeya mermerê ku dişînin Herêma Kurdistanê û da zanîn ku piştî êrîşên DAIŞ'ê yên Herêma Kurdistanê, rêjeya hinardekirina mermer a ji bo vê herêmê hatiye asta rawestînê. Tûtal, anî ziman ku piştî xurtbûna parastina herêmê û paşverevandina DAIŞ'ê bazara Herêma Kurdistanê jî hêdî hêdî ber bi geşedariya xwe ya beriya şer ve diçe û got: "Weke welatên Bakurê Afrîkayê û Sûriyeyê bandora şer a neyênî li bazara Iraq û Herêma Kurdistanê jî kir. Para hinardekirina mermerê Amedê ya ji Herêma Kurdistanê re pareke mezin bû. DAIŞ'ê derbeke demborî li vê bazarê xistibe jî weke bazarên din ev bazar jî hêdî hêdî ji nû ve digeşe û em mermerê xwe dişînin Herêma Kurdistanê jî"

# Alparslan wê gundên Mûşê wêran bike



Li Mûşê Bendava Alparslan 2 ya ku tê çêkirin dê 21 gundan di bin avê de bihêle. Bi temamkirina bendavê ve dêrên ji dema ermanan mane, girikên ji dema bîzansê mane û çanda gundan a ku ji aliyê hezaran kesan ve tê jiyîn jî tune bibe. Ji welatiyên gundê Tepeyê Hayrettîn Ozer diyar kir ku piştî bendav bê temamkirin dê mecbûr bimînin koçî bajarên mezin bikin.

Li Mûşê Bendava Alparslan 2 ya ku tê çêkirin piştî ku bê temamkirin dê gelek herêmên dîrokî jî di nav de 21 guhdan di bin avê de bihêle û tune bike. Welatiyên ku debara xwe bi sewalkarî û çandiniyê ve dikin jî piştî ku gundên wan di bin avê de bimînin mecbûr bimînin koç bikin. Gundê Tepeyê Gimgimê ku ji 100 malan pêk tê dê di bin avê de bimîne yek ji van gundan e. Welatiyê gund Hayrettîn Ozer diyar kir ku ev 40 sal in li vî gundî dijî û wiha dirêjî da axaftina xwe: “Me mala xwe Nû çêkiribû. Di warê aborî de rewşa me hinekî baş bûbû. Gundê me dê di bin avê de bimîne. Niha em mecbûr in biçin ciheke din.” Ozer da zanîn ku rayedarên ku bendav çêkirine ewil soza dê ji bo wan xanî bidin çêkirin dane wan lê beriya hefteyeke heyeteke nû hatiye û ji wan re gotina “Em ê ji we re beramberê 140 hezarî xanî çêkin” bi kar anîne. Ozer got ku ne pêkan e ku welatê vê pereyê bibînin û wiha berdewam kir: “Li gund mesrefa malekî 30-40 hezar TL ye, gundî vê 140 TL pere li ku derê bibînin. Em ev yek red kir.”

**‘Ciheke em biçin nîne’**

Ozer diyar kir ku piştî bendav bê temamkirin cihê ku ew ji bo xwe xanî çêkin merayên wan e û wiha got: “Heke em li ser merayan gund cardin înşa bikin vê carê jî cihê ku em sewalên xwe biçêrinin namîne. Heke em nikaribin sewalên xwe xwedê bikin, çandiniyê nekin em ê li wir çi bikin. Li hin gundan çêrê jî di bin avê de dimîni, ciheke ew biçin jî nîne.”

**Çand û dîrok dê tune bibe**

Ozer diyar kir ku li hin gundan dêr hene û li gundê wan jî hoyukên dema bîzansan hene û ev berhemên dîrokî jî dê di bin avê de bimîne. Ozer anî ziman ku piştî ku gund di bin avê de bimînin ev yek dê bibe sedama koçberiyê û heke biçin Mûş ê li wir derfetên kar nîne, mecbûr dê biçin bajarên mezin û li wir jî ji bo kesên din koletiyê bikin.

**‘Me debara xwe bi rehetî dikir’**

Ozer destnîşan kir ku gundî bi rehetî di-karin debara xwe bikin û weha berdewam kir: “Hinek ji wan 50-60 pez xwedî dikirin. Bostanê hemû kesan hene. Bi vî rengî bi rehetî debara xwe dikirin. Bi berhemên ji sewalan digirin û tiştên li bostanan diçinîn ve bi rehetî debara malbatên xwe dikirin. Nime em biçin merayê em van tiştan çawa bikin.”

**Nayê zanîn bendav dê kengî bê temamkirin**

Ozer anî ziman ku rayedarên şîrketa ku bendavê çêdike di gelek mijaran de agahî nadin wan û ji ber vê yekê jî gundî perîşan bûne û ev agahî da: “Mînak li gundê me nêzî 4 hezar pez hene. Qasî 400-500 jî dewar hene. Piştî ku bendav bê çêkirin cihê ku ev bên xwedîkirin namîne. Dê kengî gund di bin avê de bimîne nayê zanîn. Ji ber vê yekê jî welatî nikarin ji bo malên xwe tiştekî bikin. Em nizanin em ê çi bikin.”



# Li Qilebanê kevneşopiyên jîndar

Li taxa Rêpin a navçeya Qilebana Şirnexê jina bi navê Nesîbe Urun (35) tevn çêdike û bi vê yekê çand û hunera destan li Qilebanê dide jiyîn û hemû kes wê nas dike.

Bi pêşkeftina teknolojiyê gelek karê wekî teng, tevn, poşî, werîs bi desta tên çêkirin jî li bakurê Kurdistanê jî hatiye jibîrkirin. Yên ku ji holê rabûne jî tenê ji bo xemlê yan jî ji bo wekî simgeyek tên çêkirin.Taybet jinên temen mezin naxwazin ev çand winda bibe. Yek ji wan welatiya bi nava Nesîbe Urun a 58 salî ku li taxa Rêpin a navçeya Qilebana Şirnexê dijî ye. Urun ev nêzî 35 sale karê çêkirina tevnê dike, bi çanda û hunera xwe li Qilebanê bi nav û deng e.

**'Ev çand, çanda kal û pîrên me ye'**

Hin karê teng û tevnê ku niha hatine ji bîrkirin û qet nayên bi karanîn jî ji aliyê Urun ve tên çêkirin.Urun diyar kir hêdî hêdî çanda kurdewarî winda dibe.Urun dest nîşan kir ku berê wan ev kar bi taybetî li gundan li ber pez û dewaran dikirin û wiha got:"Me pez li zozanan xwedî dikir û heta şevê me hiriya wan ji bo teng û tevnê dirêst. Lê belê êdî ev çand nemaye. Ev çand, çanda kal û pîrên me ye." Urun da zanîn ku ji bo ev çanda kurdewar winda nebe ew ê heta emrê xwe yê dawî vî karî bike. Urun got ku ew vî karî hem ji bo çanda wan tune nebe dike û hem jî pê debara mala xwe dike. Urun destnîşan kir ku ew serê tengeka ku çê dike bi 60 TL yî difroşe.

**Naxwaze çanda kurdan winda bibe**

Her wiha Jina bi navê Laleş Şengîl (53) jî ev nêzî 30 sal in karê çêkirina ber piştên dewaran dike. Ber piştên dewaran jî çandeke kurdan e. Şengîl jî ev tişt anî ziman: "Di roja me ya îro de ji ber her pêşketina teknolojiyê û berhemên sanaiyê çanda ber û piştan winda bûye. Demê berê ne wekî niha bû. Wê demê jiyana me hemû li ser pişta dewaran bû. Niha ji gelek gundan jiyana wan li ser pişta dewaran e. Ez ber pişta dewaran, teng, hevsarê dewaran çêdikim. Ji bo pişta dewaran ji bar kul nebe. Divê ber piştên dewaran baş û nerm be ji ber vê yekê ez wekî çandekê û pêdiviyekê vî karî dikim." Şengîl got ku em wek jinên kurd naxwazin ev çand winda bibe û heta dawiya emrê xwe ew ê berdewam bikin.



# Prof. Friedrich Spiegel û zanyariyên kurdî



**Mehmet Gültekin**

Di sedsala 19’an de piştî ku di nîvê pêşîn de kurd wek miletek serbixwe ji aliyê zanyar û gerokên rojavayê de hatin kifşkirin û di derbarê ziman, dîrok, wêje, civaknasiya wan de çavkanî û belgeyên wek destnîsan hatin berhev kirin, di nîvê duyem ê vê sedsalê de gelek pisporan di warên cûda de pirtûk û xebatên zanistî amadekirin û weşandin.

Prof. Friedrich Spiegel (1820-1905) Îranistîkekî alman bû ku bi piranî di warê zanyariyên kurdî de wek pisporekî balkêş û çavkaniyeke xurt hatibû nasîn. Ew bi taybetî jî wek pisporê dîroka kurdan û ê lêkolînên Zendavesta navdar bû.

Piştî ku Prof. Spiegel di salên 1865-69’an de du pirtûk yên ku ji wergera Zend Avestayê, ji lêkolîn û şireveyên wî pêhatibûn weşandin, ew êdî di dinya zanistiyê bû xwedî nav û qedrekî payebilind. Ji wê pêve Zend Avesta bû çavkaniyek xurt ji bona lêkolînên ziman, felsefe, dîroka baweriyan û gelek beşên mayîn yên zanistiyan.

Mijara duyem ya lêkolînên Prof. Friedrich Spiegel ji dîroka kevnare ya kurdan û bi taybetî jî ji têkiliyên wan bi medan re pêk tê. Ji bo vê lêkolîna xwe Prof. Spiegel hemû çavkaniyên ku di dema wî de bi dest diketin yên weke pirtûkên kevn yên baweriyan, nivîsên Strabon û Ksenefon, çavkaniyên ermeniyan, nivîsên bi bizmar ku bi piranî jî yên ku aliyê Henry C. Rawlinson de hatibûn peyda kirin, her weha hemû nivîsên pisporan yên ku di sedsala 19’an de li herêmê derheqê zanyariyên kurdî de lêkolîn kiribûn wek Ritter, Ainsworths û Layard. Piştî lêkolîneke dûr û dirêj Prof. Spiegel ev xebata xwe ya derbarê dîroka kurdan de jî di sala 1861’an de weşand.

Goreyî baweriya Prof. Spiegel her çiqas di dema medan û ya dewletên piştî Medan de li herêmê tevlihevî çêdibûn û gelek caran ew dewletên mezin û xurt hildiweşiyan jî, lê belê bandora van tevliheviyan di wan serdeman de li ser jiyana navxwe ya eşîran kêm çêdibû. Ango di sîstema jiyana wan û wargehên piraniya wan de bi sedsalan, carina bi hezar salan jî guhertinên bingehîn çênedibûn. Lê belê di dema van bûyeran de guhertinên demografîk bi piranî di bajarên sereke de diqewimên ji ber ku alîgirên desthilatdarên nû ên beriya xwe ji bajaran bi dûr dixistin an jî ew bi xwe ji ber tirsa ji desthilatdarên nû ji bajaran vedikşiyan çiyan û deştên di qûntara wan de.





**Prof. Spiegel dûr û dirêj şiroveya erdnîgariya ji Çolemêrgê heta Sena û ji çiyayên Hewraman û ji deştên Kerkûk-Hewlêrê hetanî gola Hezarê û çemê Erezê li bakûr dike û wê tev çiya, deşt, çem û golan radixe ber çavan.**

Prof. Friedrich Spiegel di destpêka xebata xwe de hewce dîtiye ku berê pêşîn rewşa Îran û bi taybetî jî ya Kurdistanê ya di serdema xwe de şirove bike. Ew ji deştên Sûriyê dest pê dike berbi herêmên bilindciya yên li rohilatê çemê Diclê û Zapê ve diçe ku ew zêdetir li ser herêmên li Kurdistana rojhilat û başûr radiweste. Ev herêmên ku ji rêzeçiyayên wek Hawraman û Zagros her weha di navbera wan de jî ji deştan pêktên bi dewlemendiya mêrg û çêregehan, av û çemên xwe ve wek bingeha jiyana mirovan gelek girîng bûn, li deştan çandinî û li bilindcihan jî bi xurtî xwedîkirina pez-dewaran karên sereke bûn. Jixwe ji ber ku ev herêm ji bona jiyanê gelekî berhemdar bû, ya ku bi piranî ji çiyan pêkdihat û gelê wê her aliyê wê gav bi gav dizanibû dewletên dagirker nediwêrîn raste rast êrişan bibin li ser herêmê.

Prof. Spiegel dûr û dirêj şiroveya erdnîgariya ji Çolemêrgê heta Sena û ji çiyayên Hewraman û ji deştên Kerkûk-Hewlêrê hetanî gola Hezarê û çemê Erezê li bakûr dike û wê tev çiya, deşt, çem û golan radixe ber çavan. Pişt re ew dîsa bi vî awayî gav bi gav, navçe bi navçe qala hemû eşîrên konfederal yên li ser vê erdnigariyê dike, hejmara binemalên wan û ya malbatên wan jî pê re destnişan dike. Prof. Spiegel pêre nav û hejmara miletên cûda yên wek ermenî, asûrî û cihû yên ku di nav kurdan de an jî li hawirdorên wan wek cînar dijîn dide, rola wan di dîroka herêmê de şirove dike.

Prof. Spiegel ji nivîsên Heredot jî erdnigariya navendî ya welatê medan neqil dike ku ew jî kêm-zêde beramberî tevaya Kurdistana rojhilat û başûr ya îroyîn tê. Li gorî Prof. Spiegel di dîrokê de hîç çavkanî tunenin ku bi saya wan bikaribe bê destnîşan kirin ku di serdemên beriya zayînê de ji bilî kurdan miletekî din di vê herêmê de wek piranî jiyabe. Jixwe faris jî bi xwe dîrok û kevneşopiya xwe naspêrin medan û herêma wan ya navendî. Prof. Spiegel destnîşan dike ku gel û eşîrên vê erdnigariyê berê xwe ji hevdu û ev herêm jî wek welatê xwe dihesibandin û ev yek ji aliyê biyaniyan de jî wisa hatiye dîtin. Goreyî wî ev welat cara pêşîn ji aliyê dewleta dagirker ya Romayê de hatiye parçekirin. Dewleta Romayê beşa bakûr ya erdnîgariya medan dagir kiriye û serbazekî xwe ê bi navê Atropates wek serwêr li wir bi cîh kiriye ku navê Aderbaidjan jî ji navê wî peyda bûye.

Goreyî lêkolînên Prof. Friedrich Spiegel kurd ji kûraniya dîrokê pêve niştecihên welatê medan in. Çîrok û destanên îranî wan wek miletekî kevintirîn yê vê herêmê destnîşan dikin, navê wî ne tenê di nivîsên Heredot de ew her wisa di pirtûka Xenefon ya di derbarê Karduxan de jî eşkere derbas dibe û di sîstema jiyana kurdan ya di dema Ksenefon û ya di dema ji nîvê sedsala 19’an de guhertinek berbiçav diyar nabe.

Piştî hilweşandina dewleta Medan ji çavkaniyan diyar bûye ku farisên Aşemenîd hin bi dehsalan bi medan re şer kirine. Her weha Prof. Spiegel di nivîsên Heredot ên wek çîrok û destanên îranî de tespît dike ku serwerê Aşemenîdên faris Kambyses dema li ber mirina xwe li farisan şîret dike ku divê ew cardin rê nedin medan ku ew dîsa bibin desthilatdar û hukimdariyê li ser farisan bikin.

Her çiqas ji medan belgeyên nivîskî yên bi zimanê wan nehatibin peyda kirin jî, ew hamû navên ku ji wan mane, bi piranî jî yên qiralên wan ji koka zimanên Îndogermanî tên. Prof. Spiegel destnîşan dike ku hemû çavkaniyên derbarê medan de wan wek miletekî Îndogermanî distnîşan dikin û ji Heredot neqil dike ku Medan di waxtê xwe de xwe wek miletek ji koka Ariyan hesibandine.

Bi kurtasî Prof. Friedrich Spiegel di vê xebata pêşîn ya derbarê dîroka kurdan de gelek ramanên cûda jî şirove dike û di encamê de tê li ser wê baweriyê ku koka kurdan digihêje medan. Ev lêkolîna wî piştre jî ji gelek pisporên dîrokê yên wek Wladîmîr Minorsky re jî bûye çavkanî ku wan jî lêkolîn û ramanên xwe yên di derbarê dîroka kurdan de li ser vê bingehê avakirine. Lê dîsa jî balkêş e ku di xebatên piştre yên derbarê dîroka kurdan de nav û ev xebata Prof. Friedrich Spiegel, ango hîmdarê teoriya têkiliya medan û kurdan pir caran derbas nabe.

## Ezîzê Gerdenzerî:

# Şanoya kurdî kulek e

Çetoyê Zêdo



Kulîna rewşenbîrî, huner û çand û wêjeya kurdî Qafqasya ye. Destpêka wêjeya kurdî, yekem dengê wêşana kurdî û di warê muzîkê de danîna hîmên mezin bo kurdî li Qafqasya hatiye rojevê. Meriv dikare bêje cihê sereke yê sirguniyê bo kurdan Qafqasya ye û aliyekî termê kurdan ê birîndar e Qafqasya. Di nava rêçên Erebê Şemo, mala Celîlan, Ferikê Usif û gelek navên ku şewla çiraya wan rêya kurdî ronik kirine de niha jî gelek kes hene ku bê hayîdariya kurdan li wan deran pêtiya kurdî gur dikin. Yek ji wan jî Ezîzê Gerdenzerî ye ku di warê şano û nivîsê de lehengekî kurdî ye û em pir bi wî nehesiya ne. Ezîzê Gerdenzerî ku bi 5 zimanan dijî û ji wan 5 zimanan wergeran dike, di warê şanoya kurdî de xebatên balkêş kirine û hîn jî li ser vê kar dike. Gerdenzerî dide zanîn ku tevî derfetên demî şanoya kurdî negîhîştiye asta çavlirê û weke pezeke kulek li dû kerî dimîne. Ezîzê Gerdenzerî li ser şano, jiyan û xebatên xwe yên hunerî pirsên me bersivand.

***We kengî dest bi kurdî kir? Hûn dikarin qala xwe û berhemên xwe bikin?***

Di 14-15 saliya xwe de min destbi nivîskariyê kir. Wê demê pir helbest û goterên min, bi navê Ezîzê Îsko, Ezîzê Emirî, Ezîzê Nemir, Şalîko Amîryan di rojnamayên “Rya teze” de têne weşandinê û bi radyoya kurdî ya Yêrêvanê têne xwendinê. Di sala 1968an de, ji alîyê Beşa Nivîskarên Kurd ya li nik Yekîtîya Nivîskarên Ermenîstanê, biryar tê qebûlkirinê, ku pirtûka min ya yekem, ya helbestan “Kilîta dil” bê weşandinê. Paşê dereng ev pirtûk, wisa jî pir berhemên min yên din, di 6 bendên almanaxa kurdî ya bi navê “Bahara teze” de, tên çap kirin. Sala 1990î romana min ya yekem “Fîncana ferfûrî” bi pirtûkeke cihê di Yêrêvanê de ronahî dibîne. Şanonameya min ya yekem “Zarîna çiya”(bi tîpên rûsî) bi pirtûkeke cihê di sala 1989an çap dibe û 1990î Şanoya Tbîlîsîyê ya Kurdî(derhênar: Mrazê Ûzo) ew nîşan dide. Dû re Înstîtûta Kurdî ya Parîsê(serokê înstîtûtê Kendal Nezan) ew şano wek film derbazî li ser kasêta vîdêoyê dike. Di sala 1996an de, berevoka berhemên min ya bi navê “Gêlavêj”, di Yêrêvanê de, çap dibe. Di wê berevokê de, romana min ya duem, wisa jî du dramayên min "Xanê Çengzêrîn", "Gelavêj/Ap û Birazî" tên weşandinê. Di Sala 2011an de, romana min ya sêem "Solên Zêrîn", kurteroman ”Hezkirina Qedexe” wisa jî çend çîrok, di berevoka berhemên min ya bi navê ”Hezkirina Qedexe” ji aliyê weşenxaneya DOZ de tê çap kirin. DOZ wisa jî kurdiya berhemên nivîskarê Danîmark yê navdar H. C. Andersen wek pirtûka bi navê ”Çîrok û Serpêhatî” (wergerandin ya min) çap dike. Çendek berhemên min bi zimanê ermenî, rûsî, damîmarkî, almanî, hatine wergerandinê û weşandinê. Niha li Danîmark dijîm. Endamê Yekîtîya Nivîskarên Danîmark im.



***Li gorî we şanoya kurdî ber bi ku ve diçe?***

Bi dîtina min, hîn jî şanoya kurdî, wek pezeke kulek e. Di Kurdistana Başûr de karmendên ku berpirsiyariya pêşketina şanoya kurdî dikin, çawa pêwîst e, bi erk û wezîfa xwe ranabin. Divê niha şanoyên profesiyonal li her bajarekî başûrê Kurdistanê de hebûna. Ciyê şanaziyê ye, ku ji salên1990î de komên şanogeriyê li Amedê û bajarên bakûr yên din de hatin damezirandin. Niha jî ew kar û xebat bi serkeftin pêşde diçe. Eferin, ez dibêjin ji bo kurdên bakûr re, ku ewan kurmanciya delal dikin zimanê şanogeriya kurdî. Li başûr de soraniya delal bûye zimanê şanogeriya kurdî ya bingehî.

***Hûn dikarin ji me re qala şanoya kurdî ya li Sovyetê bikin?***

Şanoya yekem ya kurdî di Yekîtiya Sovyêt de, sala 1937an û li Ermenistanê, gundê Elegezê de hat damezirandin. Ew şano ya dewletê û profesiyonal bû. Li wir drama "Mem û Zîn" ya li ser bingeha destana Ehmedê Xanî amade kirî, hat pêşkêşî temaşevanan kirin. Drama "Hamlêt" ya dramanûsê înglîz yê navdar William Şakespeareê nemir li wê şanoyê de hate lîstin. Lê di sal 1947an de karê Sanoya Kurdî ya Elegezê tê rawestandin. Dawiya salên 1970î û destpêka 1980î dîsa Sanoya Kurdî ya Elegezê (Berpirsiyar Şalîkoyê Sefo) dergehê xwe li ber temaşevana vedike û pir drama û komêdî yên balkêş pêşkêşî temaşevanan dike. Sala 1980î Şanoya Kurdî ya Tibîlîsê (Gurcistan) tê damezirandin. Emek û keda damezirndar, birêvabir û derhênarê wê şanoyê, rehmetiyê Mirazê Ûzo Ceferov pir bû û xebata wî tu car nayê bîrkirinê. Wisa jî xebata bîst însanên li wê şanoyê de dixebitîn tu car nayê bîrkirinê.

***“Zarîniya Çiya” çawa hazir bû? Hinekî hûn dikarin qala serboriya wê bikin?***

“Zarîniya Çiya" di sala 1988an de hat nivîsar; di dema destpêka hilweşîna Yekîtiya Sovyêt de, dema nijadperestî li hemû komarên Yekîtiya Sovyêt de serê xwe bilind kiribû. Gava ku min ji bavê xwe re ev şanoname xwend, hêsir li çavên wî barîn, ew giriya û got: “Erê, lawo, me (kurdên êzîdî) du bav ji cîkî çal nekiriye”. Şano di derbarê wê yekê de ne, ku bi çi awayî kurdên Êzîdî yên bakûrê welêt, di sala 1918an de, bi mecbûrî dev ji bingeha kalûbavên xwe berdidin. Koçberiya wan, zulm û zehmetiya wan li ser riya koçberiyê dîtî, ewqasî bi êş û azar bûye, ku çiyayên welet jî li pey lawên xwe dizarin, digirîn. Ewan pişta xwe didin çiyayên xwe, welatê xwe û berê xwe didin Welatê Ûris. Welatê Ûris paşê dibe Yekîtiya Sovyêt. Di Yekîtiya Sovyêt de terora Stalînîzmê dest pê dibe. Gernasên me yên şanoyê tên girtin, dikevin heps û zindanan. Di heps û zindanên Yekîtiya Sovyêt de, zulm û zordariya gernasên me li ber çavên xwe dibînin, hîn jî ji zulm û zordariya wan li welêt de dîtibû girantir û bi şewattir bû...

***Vê gavê tu li ser çi mijûl î?***

Dîsa karê nivîskariyê dikim. Berhemên xwe yên êdî hatine nivîsar, ji bo weşandinê amade dikim û hwd.

***Şanogerên kurdî, têkiliya wan ziman çawa ye?***

Pê zimanê qels û giran şano nayê çêkirin. Çimkî hacetê şanogeriyê yê herî giring, ew ziman e. Şanogerên kurdî jî hewl didin xwe, ku bi zimanekî paqij û zelal, derkevin pêşberî temaşevanan.

***Ji wêje û zargotian kurdî divê kîjan çîrok, roman û hwd, di sehneya şanoya kurdî de hebe?***

Destana “Rostemî Zal”, destanên di derbarê Keleha Dimdim û Xanê wê, Xanê Çengzêrîn/Lepzêrîn de, destana evîndariyê “Leyl û Mecnûn” û hwd. Bi dîtina min, bûyerên Şengalê û Kobanî wê têkevin li şanoya Kurdî de. Ne mêrxasî û ne jî qelsî nayêne bîrkirin; qehremanî divê bê xurtkirin, qelsî ji holê bên rakirin. Xeletiyên xwe divê em bi xwe rast bikin, destkeftinên xwe pişguh nekin.

